BERXWEDAN

Têdayî

Berxwedan .................... 3-4
Televîzyona Holanda, bi avûkat Hüseyin Yıldırım ra hevpeyvîn çêkir ......... 5
Meh û rojê Girtingeha Leşkerî ya Diyarbekir, bê kuştî derbas na be! ......... 5
Rojnamevanê Holendî ............. 6
Mustafa Karasu hê ji ber mirinê derneketîye ........................ 6
Komita Giştîyê, CBYDF daxuyanî kir ku di meha Kanûnê 1982a de civîna komita CBYDF çêbû .............. 7
Çend Gotin!! ...................... 7
Li Kurdistan'a Îran û Îraq .......... 8
Armanca xebat û tekoşîna Awrûp'ê û çima du federasyon ................ 9
Newroz danezana çiye ............ 12
10 Militanên şoreşger hatin kuştin! .... 14-15-16-17-18-19-20
Hêza qolonyalîst di bin navê tetbîqatê de hovîtî pêk tîne .................. 21
Ziman û çand ..................... 22
Heey Dîrok ................... 26-27

Berpirsiyar



BERXWEDAN

Kovara Kurdî

Xwedî: Federasyona Demokrat ya Komelên Kurd li Swêd



Navnîşan - Adress

c/o Kurdiska Bockafet
David Bagares gat; 12 nb
111 38 Stockholm
SWED

XWENDEVANÊN HÊJA!

***Hejmara destpêka Kovara Federasyona Demokrat ya Komelên Kurd - li Swêd*** "BERXWEDAN" ***pêşkêşî we dibe.***

"BERXWEDAN" ***kovara demokratî ye. Di weşîna xwe de, bi giranî; li ser pirsgirêk û rewşa girseyên macirên gel ê Kurdistan disekine. Bersîvanîn û ronahî kirina pirsgirêkên macirên kedkarê Kurdistan û alîkarîya tekoşîna her hêllê netewa Kurdistan ji xwe re amanc digre.***

"BERXWEDAN" ***di pirsgirêka weşînî de, bendewarê rexnê û alîkarîyên we ye.***

***Bi çavên rexnedarî û têgihîştinî*** "BERXWEDAN" ***bixwîne!***

Berxwedan herdem jîyan û karê me be!

# BERXWEDAN



*Berxwedan jiyane.*

Bi rasti şert û şirûtên pêkanina berxwedanê tune. Adan û hilma tarixê ye. Berxwedan ji tarixê va bê seknandin, hebûna xwe di jiyana mirova, şerê çînî û di şerê gelan de di domine.

Her tişt; hergav, her saet û di bin demê de, ji bo jiyan domandinê liberxwedidin. Pêşvehatina dîrokê, çewan li ser himê şerên çîna be, berberiya çîna; ji tarixê ra bingeh danî be, berxwedan ji, bi hêza xwe ya pêşvebirinê di pêvajokê tarixê de ciheki pêwist girtiye. Rola xwe herdem leyistiye. Bi kurtî; berxwedan bûye kanîya jiyanê. Bûye dara hebûnê. Mafparaziya çîna, gelan û mirovan, hebûn û serkevtin û jindomandina gelan û çîna bê berxwedan, bê berberî nekemiliye. Û serrast nebûye. Çînên serdest, sazûmanên sitemkar û hêzên qolonyalist, domandina saziyên xwe, heta bi xwina xwe ya dawî yê, li hemberê çînên kedkar, kedkarên belengaz û li dijî gelên bindest bi bingehên pûç berberî meşandine. Gelên bindest, çîna kedkar û kedkarên belengaz; li ser bingehên mafî, ji bo binketine sitemkariyê, pelişandina serdestiyê û ji bo serfirazi û serkevtinên gela, gelan vê rêya hebûnê, vê dara bingehî sipara hebûna xwe dîtine.

Însan; ji bo jiyanê rast û bi rûmet, çîna; bo mafparêziyê, gelan; ji bo rêvekirina serkevtin û hebûna xwe, tim û tim li berxwedane. Berxwedan, di her dîrokê gelan de, ji girsên û çînên bindest ra bûye rûmetî û kanîya peznê û gel; li ser vê pêmahina bingehî dilşa dibin.

Jî rexek va, ev ji bo gelê me jî raste. Ger li hatina pêvajoka tarixa Kurdistan bên rihêntin; kûrîya vê yekê derdikeve meydanê. Di dîroka Kurdistan de; li hêllek; serdestiyên biyanan, sazûmanên qolonyalîst, xayintî û melisandinên çînên serdest, dûrketina taybetên netewi hebe. Û ev di dîroka Kurdistan de qunceki tarî be, ray li tunebûnê bine û vê pêşniyar bike. Li hêlla di; qunceki ronahi, zelal û hebandina hebûna netewi parastina taybetên gel, berberî, qewimandin serhildan û berxwedan hene. Pêmayînên tarîxa gelê Kurd, û pêmayînên Kurdistan, rûmetîyên kanîya pezn û serfiraziyên gelê me evin.

Di dawîyê de, berxwedan û serhildan bûbin sebebên dûrketina demê û pêşketina civakî jî, dîsa, ji ber parastina rûmetiyên xwe gelê Kurdistan bê berxwedan û serhildan nemaye. Li ser-hev, sedsal bi serhildan û berxwedanan, pêvajoka dîroka xwe xemilandiye. Ger, di vê hêllê de, pezn û serfiraziyên me hebe ew jî, tewrê berxwedan û qewmandinên gelê me ye.

Di dema kapitalistiya qolonyalistî de jî, berxwedan û serhildanên gelê Kurdistan kêm nemane. Ew berxwedanên bi rûmet, di vê pêvajoka nû de, bi giranî gihiştine maneyên xwe yê rast û di kûrîyên Kurdistan'ê de reh girtine, bizir çandine. Hê bi rasti; Kurd û berxwedan, berxwedan û Kurdistan, serhildan û dîrok, dîrok û berxwedanên gelê Kurdistan bi kûrî, ji hev nayên qetandin.

Bi hev û du va girêdahî mane, bi hev xemilîne. Van tekoşînên gelê me, vê yekê derxistine ku, cih û dem ji bo berxwedanê tuneye. Rê ya bive-neve ye. Di vê rêyê de, tekoşîna rizgariya netewa Kurdistan avabûye û bingeh girtiye. Berxwedan; rêya gelê me zelal kiriye. Tekoşînê tekûz kiriye û rê ya hebûnê vekiriye. Ji ber dema herikandina helandinê û tunekirina netewî, gelê Kurdistan bi ezmê berxwedanê, bi berxwedanên bê hempa ketiye rê ya hebûnê. Dema bihuri ev yek bi zelalî derkir ku; berxwedan ne gotine, ne hêsane û ne peyvên giloverin, ne ray anîna taybetên biyaniyan, ne ray anîna sazûmana qolonyalist û ne jî pêşniyariyên melisandinê, pûçitiyê û ne serxwarî ye. Ezm'e, bir û baweriye, biryarî û dilsoziyên tekoşîna rizgariya netewî ye. Canfêdahiye, pêkanîn û rêya amanc girtina şoreşê ye, hebandin û parastina taybetên netewî ye, dijmin nasiye, xwe baweriye û xebata tekoşînê û hebûne. Ne tenê di hoyên hêsan de di hoyên dijwar û her pergalî de bi kar tê.

Bellê; gotin hêsanin, kirin girane. Gotin û kirin ne weke hevin. Lê, nêrîn û gotin; rêzanê kirinê ne. Rê ya pêkanin a ronahî dikin. Bi şeva danê nêrîna: kirin li ser amancên xwe dimeşe. Û tekûz dibin. Hêlrastîyek ji eve ku; berxwedan bi xwe ne gotine. Bi pêkanînan tê meydanê. Û kirin bi xwe ye.

Bi kurtî, domandina berxwedanê hebûna netewî ye. Bi van kifşkirinan; ev bi zelalî xuyan dibe ku, çewan gelê me li ser tewr û hîma berxwedanê gihiştibe rêya hebûn û tekoşînê, ewê girsên macir bi domandina tewrê rûmetî hêz pêwistî ya xwe der-ber-çav bike. Di ev hêlla navçe de, xwe bi kar û barên tekoşîna gelê me bi kemilîne. Û ewê bi jîyana xwe kêrhatê şoreşê be. Peşdarê Rêya herikandina tekoşîna rizgariya netewî be. Çewa li welat; rêya hebûn û tunebûnê, li pêşi ya gelê me sekinî bû; gelê me bi rayanîna rêya hebûnê, tekoşîna rizgarî ya netewî pêş de xist, li vê rêyê, xwedî derket. Rêya melisandin û pûçitiyê bê fesal hişt. Li her hêllên jiyanê, ev tê li pêşiya kedkarên Kurdistan radiweste. Ev yek ji heye ku, hoyên Awrûp'ê ne hêsanin. Hêlleki dijwar e. Ger taybetên demê bi van hoyan ve berçav bên, pêwistîyên rêya zelal dibin. Xebat û tekoşîna Awrûp'ê, pergal û pivên xebatê pêwîstî digrin. Lewra, demên har û ev hêl bi xwe xwediyên taybete, helandin û melisandina ye. Ji ber gellekî sebeban, li ev hêllên navçe girêk û girêdankê civakê giştek ji hev hatine vekirinê. Mîna civak, li ser valahiyan ma be. Bi rastî, bi sebebên di van girsên macir û jîyanên girsên kedkaran bi dijwarî tê domandin. Kefte-lefteka giran heye. Ji bo van yeka, ev kifşkirin ji pêwiste; ger helandinek hebe, bêteşebûnek hebe, pûçbûnek hebe, ev, helandin û pûçketina tewrê çînî ye. A rastî ne kes, bi wan ve, helandin û pûçiya dîtin û tewrên çînitebeqî ser û binihev dibin, tevlî-hewa diminin.

## Û ÇÎMA BERXWEDAN

Bê şik ne tenê, ji ber hoyên dijwar, taybetîyên demê, ji bo pêkanîn û zelalkirina kertê û pîvên welathizî, demokratî û ji bo kerhatina xebatên hêllê, rêya rast li ser bingehên amanca Tekoşîna Rizgarî ya Netewa Kurdistan, û ji bo derkirina rûreşî û hovîtiyên karbidestê qolonyalist a, me, derxistina kovar a "BERXWEDAN"ê de yek pêwîstî ev bû ku, di rexên weşana de kar û barên li gora hewcetiyên tekoşîna Kurdistan, û li gor qeysên tekoşîna gelê me pêk ne di hat. Yên di vê hêllê de bi "kar û bar" bûne *ji* pirsgirêkên netew û civaka gelê Kurdistan dûr mane. An xwe dûrxistine. An ji; amanca weşinî bi xwe ji, dûrxistine. Di xeml û xeyala karên weşînî de; dozparazî, sipartina taybetên netewî, birxistin û biranîna netewa Kurdistan, tekoşîna rizgarî ya netewî nîne. Mafê netewî, doza gel kêrî xwe tinin. Lê, kêrê doza gel û mafê netewî nayên, van hêsan dikin. Tenê ji bo debara xwe kovarên mijûlahî bikar tinin. Debarê li ser weşînê dimeşînin. Ne tevger û tekoşîna rizgariya netewî, ne demokrat û welathizî ya Kurdistan ne jî doza gel û pirsgirêkên tekoşînê, yekîtî, hevkarî û piştgirtiyê. Çewa nêrînên zelal, ji pirsgirêkên girsên macir, kedkarên Kurdistan re naynin, kêrî vê yekê nayên, li gor taybetên demê bi kar û bar na kemilin, hewqas ji hevkariyê û pirsgirêka yekîtiyê ra dûr diminin. Ku zelalkirina van yeka ji bo gelê me rê'yeka biveneve ye. Berpirsiyarên welathizî û şoreşgerî bi kêrhatina van pirsgirêka aşkere dibe.

Hovberî, zerp û zorbaziyên karbidestên qolonyalist aşkere nayên daxuyanî. Bi xebatên têkûz nayê meşandinê. Bûyer û zorbazî yên li ser gelê me berçav nabin. Welathizî û xwedî derketina gelê Kurdistan, pergalên xebata demokratî tên hêsankirinê.

Bi xeml girtina, pîv û kirtên demokrat û welathizî ya Kurdistan, bi girêdana doz û berçavxistina tekoşîna rizgarî ya gelê me, ewê "BERXWEDAN" di xebata weşînî xwe li pirsgirêkên girsên kedkarên Kurdistan bigre. Parazvaniya hevkarî û yekîtiyê bike. Û ewê xwe bi piştgirtina tekoşîna gelê Kurdistan bi kar û bar bîne, xwe bi pergal bike.

"BERXWEDAN" ewê, bi piştgirtî û hevalbendî ya refê welathiz a bi parastina kedkarê Kurdistan, jîndar bibe.

**BERXWEDAN** *dengê me be!*



*Xwesiparî ixanetî, Berxwedan serhatîn e.*

# Televizyona Holanda, bi Avûkat Hüseyin Yıldırım ra hevpeyvîn çêkir

Di meha buhurî de, televîzyona Holanda, li ser rewşa Kurdistan û bi taybetî, li ser jiyana girtîyê hepsa Diyarbekir weşînek pêşdar kir. Ji bo weşînê, berpirsiyarekî televîzyona Holanda, bi Avûkat Hüseyin Yıldırım ra hevpeyvînek pêk anî. Hevpeyvîn li ser gelê Holandî û girseyên macir çingînîyeka pêwîst pêk anî.

Ev weşin, ji ber di pêvajoka rûnîştina Konseya Awrûpa de hatiye dîyarî, pêwîstîya vê weşînê heye. Lewra di rûniştina Konseya Awrûpa de pirsgirêka Tirkîyê ewê bihata peyvandin. Hin dewletê Awrûpa'yê, xwedî armanç, pêkhatînên li Tirkîyê, bi mesûlditina karbidestê sazûmana Tirkîyê, gilîyê Komîsyona Mafê Mirovanî kiribûn. Di giliyên xwe da bi kurte-birî van yeka dabûne nîşandan. Ku, li Tirkîyê; eziyet û lêdan, bi sererêzî pêk tê, girtingehan de hoyê dij jîyana mirovî û dadigehan de bêdadî heye. Mafên siyasî nayên ditin û mafê kêmnetewiyê Tirkîyê nayê naskirin hwd.

Piştî sekna van pirsgirêka, di hevpeyvînê de Avûkat Hüseyin Yıldırım bi kurtî, li ser rewş û jiyana girtîyê şoreşger û li ser hoyên Kurdistan awha sekinî: *«Berê ji, karbidestê qolonyalist; tunekirina gelê Kurdistan ji xwe ra amanç danibûn. Pêkaninê wan di vê rêyê de hebûn. Lê, iro; ev pêkanin derketiye qeysa rewşa şerî. Hê zêdetir berçavbûye. ... Tu gundekî, malekî û kesekî nemaye ku, ji*



*Hüseyin Yıldırım*

*vê zilm û zorbezîya qolonyalist tam nesitendibe. Hê zêdetir ev zerp û zorbezî, di Girtingeha Leşkerîya Dîyarbekir de, li ser rexê şoreşger û welatperwer bi zelalî xuya dibe. Giştека bi lêdan û eziyetê giran anîne ber mirinê. Wan wekî hestîyê rût hiştine. Her dem, her deqe, her saet di bin lêdanê de li ber mirinê ne.*

*Lê, di bin vê rewşa dijwarî de ji, rexê biryarvanê bîr û bawerîya doza Kurdistan, bê deng naminin. Li berxwedidin. Bi serxwarîyê razî nabin. Ji dêlva serxwarî, melisandin û xayintîyê, kuştina xwe didin berçav.*

*Min nêzî salekî girtîmayina xweda, van yeka bi çavê xwe dît. Qolonyalista Tirk, bi pêkanînên dijwarî; kuştin û tunekirina, rexê berxwedanî daye ber xwe. Bi girêdahîya vê amancê, şoreşgerê biryarvan, Ali Erek, rêberên gernas M. Hayri Durmuş, Mazlum Doğan, Kemal Pir, Ferhat Kurtay û hin tekoşer bi hovîtî kuştin. Hoyên girtingehê ne li gor jîyana mirova ye. Di dema hovîtî de ji, jîyan, hoyê bi vi celebi ne buhurandîye...*

*Dadigehê Girtingeha Leşkerî ya Dîyarbekir de, ji biniva bêdadî tên meşandin û ev dadigeh ne serbixwe ne. Bi Komisyona Ankarê va girêdahine. Ev komisyon biryar dide, biryarê vê komisyonê tên meşandin. Biryarê mahkemê û derketina mahkema bûye çavxapandin, Bê avûkat, ne ji girtî dikarin bi peyivin. Ger, ne ji xebatê derva, yê rexê şoreşger û welathiz, nexasim ji xwediderketina alema giştî a demokratî bûna ez ne difilitîm. Ez bi vê bawerim, ger xwediderketineka bi hêz, xebateka gewre, tekoşîneka fireh pêk nê, ev refê girtî roj bi roj, yek bi yek û bi girsetî ewê bê kuştin. Lê, ez bawerim ku bi van kuştina ji karbidestê qolonyalîst nagihîjin amanca xwe. Lewra, rêya vê amancê hatiye girtin. Lewra doz û tekoşîna Kurdistan, ne tenê reh berdaye deşt û çîya, di him û dîwarê girtingehê de ji jîndar dibe. Ez bi rojên hatinê bawerim...!»*

# Meh û rojê Girtingeha Leşkerî ya Dîyarbekir, bê kuştî derbas na be!

Li ser girtîyê Girtingeha Leşkerî ya Dîyarbekir karanînên cunta faşîst bi hovîtî pêk tên. Cunta qolonyalist, bi harî, zerp û zorbezîyên dij hişê mirovî karanina di domîne.

Di meha Kanûnê de, welathizê biryarvan, gundîyê xweşmê; Aziz Büyükertaş, bi lêdan û eziyetên hovberî hat kuştin. Piştî, çend roj li ser mirina wî derbas dibe, hêjanê maliyê wî, bi bûyerê didin hisandin.

Welathizê hêja, di Girtingeha Leşkerî ya Dîyarbekir de, ev sê sal girtî mabû. Di vê dema dirêj de, karbidestên girtingehê; bi leystik û deka û eziyet û lêdanên giran, Aziz Büyükertaş; ji bîr û bawerî nexistin. Biryarîya bawerîya wî ne şikandin. Wî ne melisandin. Leystikê li ser dihatin gerandin û amancê karbidestê hovber bi tewr û tevgera biryarî pûçxist. Li hember tewrê xwesiparî û melisandinê hişk rawestîya. Di van hoyê dijwar de, xwe; bi biryarî û ditineka hêzî kemilandibû. Aziz Büyükertaş; li hêla Halfetî ji gundê Seltek, welathizekî, 45 salî bû. Di hember dijmin de biryarî û tekoşîna berxwedanî ji xwe ra rê girtî bû. Tewr û tekoşîna wî û berxwedanê girseyê gelê Kurdistan, di be mêzin û nîşana hêvîya Tekoşîna Rizgarîya Netewa Kurdistan.

Ewê, di tekoşîna serxwebûna Kurdistan de bê jîyandin!

# Rojnamevanê Holendî

Di rojnama "Haagst Post" de Hans Hoffman derheqê Girtingeha Leşkeri ya Dîyarbekir de û derheqê rewşa dadigehan nêrînên xwe daxuyan kir.

*«Bi kêmkeysî be ji bi hevalê rojnamevan re em di dadigeha girtîyên polîtîkî yê girtingeha Dîyarbekir pêşdar bûn. Lê, ketina me ya dadingehê gellek bi zahmetî çêbû. Tenê yek kes temaşekar û gohdarvan hebû. Bendên qanûnê, di dadigehan de bikar nayên. Mafê parastina siyasî ji binî va tuneye. Hatiye rakirinê. Ewê 300 kes pêşdarê dadigehê bibûna. Lê, hejmara kesên heyî gellek kêm bû. Ji xwe ji her tiştîra dadigeh biryar distîne. Anîna girtîya hewce nabînin. Yên ku tînin dadigehê jî di bin rewşa rûreşî de derdixin qada dadigehê. Li ser serê her girtîyekî leşkerek dimîne. Di 15 ê Tîrmehê de refeka PKK anîn. Ji ber ku giştekî girtîya nanîbûn ev ref gellek piçûk bû. Bê avûkat bûn. Di dawa destpêkirinê de Kemal Pir; ji ber pêkanînên faşîst yê rewşa hepsê, û rewşa dadigehê û hember lêdan û eziyetên hovberî biryarê destpêkirina rojîya mirinê daxuyankir. Van rewşan protesto kir. Zû-zûka wî ji salona dadigehê derxistin.*

*Min ferman ji serleşkerê orf-i idarê sitendibû, lê, disa jî karbidestên girtingehê goh nedane fermanê. Nehiştin ku ez bi girtîyan re bipeyivim. An wan bibînim. Min xwe nêzî têlê pêçayî kir. Di wê bihndemê de min mîqrofona xwe li girtîyê nêzî min tê girt. Pêşdarî wî kir. Zû-zû, li ser hev û dû hin tişt got. Destê xwe avête pişta xwe lê leşker zû gihiştê. Her çiqas min bi axaftina wî nizanîbiya jî, lê dîsa ez bawerim ku pişta wî girtîyî an di eziyet û lêdanê de şikestibû, an jî ew seqet mabû. Lewra dimeşîna xwe de di lîtimî û nexweşbû. Malîyên girtîya tenê li dervayê têlêpêçayî dest ji wan re dihejînin. Mîna ku min dît, mêşek jî newêre li derîyê hepsa Dîyarbekir deyne...*

*Pişti van dijwarîyên eşkere ku berçavketine, di hemberê cunta faşîst de piştgirtina tekoşîna şoreşgerê Kurd û Tirk ji xwe ra berpirsiyarîya mirovî dibînim.*



*Sembola liberxwedanêne zindan.*

---

*Ketibû Rojîya Mirinê*

## Mustafa Karasu hê ji ber mirinê derneketîye

Li gohra xeberên gihiştine rojnama me, Mustafa Karasu bi refê hogirê xwe ra ketibû rojîya mirinê. Rewşa jîyana berxwedarê PKK Mustafa Karasu, gav bi gav girantir dibe. Wekî ku tê zanin, di 15 ê Tirmehê 1982yan de esirê şer, tekoşerên PKK ji bo; mafê parastinê nên birandin, lêdan û eziyet û tunekirinê li hepsê bên seknandin, hwd. û ji bo rewşa jîyana hepsê, dest bi rojîya mirinê kiribûn. Rojîya mirinê nêzî du meha berdewam kir, û dibin lêdan û eziyetê giran û vê rewşê de, endamê KM-PKK, M. Hayrî Durmuş û Kemal Pîr û tekoşerê egît Akif Yilmaz şehît ketin. Gellek berxwedarê tekoşînê ji ketibûn ber halê mirinê. Wek ku em pê agahdar bûne, ji ber ku ev tevgera berxwedanê çinginiyeka bi hêz him li welat, him jî li derveyî welat pêkani, ji tirsa vê çinginiyê serekên cunta û karbidestên hepsê, dîsa zorbazîyên xwe li ser va esira bi giranî di meşîne, ji berê de berxwedarê ku ketibûn halê ber-mirinê, wan di vê rewşê de bê derman di "cihê mirinê" de dihêle. Roj bi roj jiyana van şoreşgera ber bi ne erinî diçe; wan bi malîyê wan re pêşdarî hev nakin.

Ev ji bo hêza berxwedana hepsê bişkîne, bi vê rêyê ji bo ku wan bê his û deng tune bike, tedbîrên vê rêyê dikemilîne. Ev pîlan, berdewamiya pîlanê qirkirinên din e. Lê, ew rastîyên ku ji 12 Adarê va tên jiyanê û ew berxwedana nîşanî, ji bona qolonyalista vê rêyê ji bê mecal kiriye. Lewna zindanê Dîyarbekir rola ku di tekoşîna Serxwebûn û Azadiya Kurdistanê de bi leyize, bi zelalî leyist û vê rola xwe bi cih aniye. Tesîrên berxwedanê xwe bi tarixê zeliqandine û bûne malê tarîxê.

Lewra bi lêdan û eziyetê, zilm û zorbeziyê û bi tiştekî nakeve pêşiya vê yekê, di rêvekirina berxwedanan de ewê gelê Kurdistanê bigihîje serfirazîyê.

# Komîta Giştîyê, CBYDF Daxuyanî Kir Ku Di Meha Kanûnê 1982a de Civîna Komita CBYDF Çêbû




*Dilxwazên Enya Yekitiya Berxwedana Dijî Faşizmê dema li rêçûnekêne.*

Komita giştkî, Cepha Berxwedana Yekîtîya Dij Faşîzmê daxuyanek belakir. Ji bo sazkirina yekîti û tekoşina giştkî hêza li hemberê cuntayê bikar were. Di vê daxuyanê de bangi li hêzê demokrat, pêşverû û welathiz dibe.

Di vê daxuyanê de, tê nişandan ku di civîna 2yemîn xeyni hêzên sazkarê cephê. Türkiye Devriminin Yolu (Rê ya Şoreşa Tirkiyê), Rizgari, "Kurtuluş" (Rizgarî) û serekê Tüs-Der pêşdar dibin. Ev civîn ji bo yekitîya hêzê şoreşger û demokrat pêwist tê ditin.

Di daxuyanê de bi kurte-nivîsî ev ditin rêz dibin: «*Di bin karbidestîya cunta faşist de, li Rojhelata-Navîn Tirkiye ji bo emperyalîzmê, xwe bi kar û barên nû kiriye. Bi vê pergala pêwist ji bo gelên Rojhelata-Navîn hêzeka zerpê ye.*

*Bi bijartina "Anayasa" vê raydîtineka piranî, cunta ji bo sitemkariye bikartîne. Referandûma 7 ê Mijdarê bi zelalî da nîşandan ku ji bo civakên me bigihîjin sazgirê aza û demokrat, pêkanîna rizgariyê gel û ji bo mafê welat, tenê hêza hemberî, hêzên şoreşgerin, yekîtî û tekoşîna hêza şoreşgeraye. Di vê rêyê de CBYDF Navçeyî digre. Cephe, ji bo derkirin û pêşxistina vê hemberîyê, xwe bi hêz dibîne.*

*Di bendên daxuyanê de, ev têkilîyê hevkarî û piştgirtina giştekî hêzê şoreşger, pêşverû û welathiz bi berpirsîyarîya şoreşgerî tê ditin. Domandinê ev yek tê diyarkirin; «... Hêzên Cephê, ji bo xeta siyasî ya şirîkî derbixin, hevkarîyê irada gelên xwe bikar bixin, û tekoşîna berxwedana şoreşgerî bi sazkirinê pêş de bixin, li derva û hundirê welat, bi kurtî li gişkî hêllê tê jîyandin, di vê rêyê de berpirsîyarîyê giran li pêşî pêkanîna rawestine.»* Bi zanistîya pêkanînê van berpirsîyara CBYDF ji yekîtîyê bivenevhira pergala xwe, ne tenê dawî û yek rê dibîne. Bi vê zanistîyê, li hemberê refa karbidest û cunta, banga yekîtî û tekoşîna hevkarîyê li giştekî hêzê şoreşger û gazi refên daxwazê tekoşînê dike.

---

# Çend Gotin!!

Roj bi roj xebata gelên jêrdest û sitembar geş dibe û berpêşve diçe.

Helbet ev pêşveçun u raperin ne hêdane. Kuştin, zindan, lêdan, talan û wêran, giştek dijwarîyê pêşketina xebatê ne. Li hemberê zordest û sitemkara ev bedelê pêşketina tekoşînê ne. Gelê Kurd, ku ta neha mafê xwe yê çarenûsî nekemilandiye, li serê hemû pengê dijwarî û işkence tê ajotin.

Ku erişê leşkerê rejîma Îran her berdewamdibe li ser Kurdistan, bigre Kurdistana (Iraq) dibin top û tenqê rejîma faşîstê Seddam Hüseyin de dinale. Her asimlê li Kurdistana (Sûrî) lidare. Nexasim li Kurdistana (Tirkîyê) zindanê Diyarbekir, berxwedarê wê bûne sîmbola xebata gelê me ji hêla din va, rûreşî û hovberîya cunta faşîsta qolonyalist tê de xuyan dibe. Dijmin bi metodê renga-reng, carna ji bi metodên veşartî, amanca xwe ya tunekirina xebat û Tekoşîna Rizgarîya Netewa Kurdistan bikar tîne. Mîna, ji demek nêzik ve di kuştina refa şoreşger da, leşkerên faşîst wan dikujin û laşê wan davêjin nava çem. Û dijmin di radyo û weşînê xwe da eşkere dike ku, (... term û laşê çend kesa li ber avê hatiye ditin) bi vi awahî destê xwe ji kuştina wan bişo. Bûyera hevberîya xwe di niximîne. Lê, bi vê ne gel û refên welat, ne ji alema demokrat, gelê cîhanê pê nayê xapandin. Lewra tekoşîn ber berdewam e.

Ji ber ku Kurd, îro du êşa dikşînin, yek êşa çini, êşa çîna kedkar, yek jî ya millî ku hemû welathiz dikşînin. Ji bo hilanîna zordestîyê û gihîştina rizgarî û mafê çarenûsî, li navbêna hemû hêzên pêşverû, welathiz û destbirakî, hevalbendî û hevkarî pêwîste. Hêvidarim Federasyona we di vê rêyê de gavên pêwîst bavêje, û herdem pêşdarê vê xebatê be. Hêvidarim ku hemû mirovê welatperwer û pêşverû di vê xebatê de pêşdar bin.

Rizgarixwazek

# LI KURDİSTAN'A ÎRAN Û İRAQ

Ji sala 1980 bi êrîşa Iraq, şerê navbera karbidestên Îran û faşîstê Saddam Huseyin, dem bi dem bi dijwarî, bi sistî, bi êrîş û berberîyên piçûk didome. Bi taybetên pêwîst, di Rojhelata-Navîn de ev şer, pirsgirêkeka giringe. Derketina şer, pergalên domandina şer, bi rewşa Rojhelata-Navîn ve ji her alî de zeft girêdahîye. Netîca şer, çewa ji bo rewşa Rojhelata-Navîn pêwîst be, serkevtin û paşketinên cepha emperyalizm û cepha demokrasîyê bi taybetên netîca şer va girêdahî mabe, şer hewqas ji bo Kurdistan jî rewşên erînî tînc meydanê. Emê bişkaftina van yeka bisipêrin hejmarên "Berxwedan" û bi kurte-birî li ser rewşa Kurdistan bisekinin.



*Zaroyên me ji şer dikin.*

Bê şik, di Rojhelata-Navîn û rewşa navnetewa de, taybetên Kurdistan, mîna vê demê derî qadê nebûne. Pêwîstîya Kurdistan tu dem mîna vê demê berçav nebûye. Ji bo rizgarîya Kurdistan rewşa tu demî, mîna rewşa demê bi erînî nekemilîye. A rastî, tu dem, Kurdistan negihaye hoyên hewqas erînî. Bi taybetên cudayî li beşên Kurdistan tekoşînên gelê me gihane. Tekoşînên beşê Kurdistan kemilîne. Li her beşî tekoşînek heye. Ev rewş, pêwîstîya pirsgirêkên Tekoşîna Rizgarîya Netewa Kurdistan derdixe meydanê. Û dijwarîya şoreşê bi xwe re tînc. Dijmin û dostên Kurdistan zêde dike. Nexasim ku giranîya welatê me di Rojhelata-Navîn de berçav ketîye, ber bi navça şoreşê diçe, û pirsgirêkên civak û netewîyên Rojhelata-Navîn xwe lê digrin. Pirsgirêka piştgirtî, hevkarî, û tekoşîna yekitî u hevalbendîya beşên Kurdistan pêwîstî digrin. Piştgirtî û hevkarîya rexên tekoşînê, li ser bendên zelal, amancên aşkere û pergalên tekoşînê dibe rêya bive-neve. Lewra, dema hevkarî, piştgirtî û pêşxistina tekoşînê, ev demin. Lewra, dijminahîya navbera rexên Kurdistan, şerên navbera hêllên tekoşînê rêberpirsîyarîyên demê, dijminahî û benda li pêş Tekoşîna Rizgarîya Netewa Kurdistan e.



*Refek Pêşmerge.*

## LI KURDISTANA IRAQ

Baxda û Misil: Bi bimbe teqandin û tekoşîna berberî de qereqol û tirimpêlê dijmin zerarên giran sitendin. Di bûyera de 13 leşkerê Saddam û ser leşkerek hat kuştin. Di ev bûyera de endamê rêxistina mixaberata Baas Mixlis Abad bi derba hate kuştin.

Amedê, zimnako, Suleymanî, Duhuk û Zaxo: li heltên Kurdistan 268 leşkerên rejîma Saddam Huseyin hatin kuştin. Serleşker û 32 leşkerê sazûmana faşîst esîr ketin. Li van hêlla bi kemin vekirinê û di seravêtina qereqolê leşkerê Baas de pozberîyê giran çêbûn. Di van pozberîya de 8 pêşmerge şehît ketin.

## LI KURDISTANA ÎRAN

Di meha borî de leşkerê Îran, êrîş birin ser hêllê Kurdistanê. Berî ku êrîşa ber bi Iraq'ê pêkbîne, girseyên Kurdistan hemberî vê êrîşê rawestîyan. Ji sallan ve ye ku şer û êrîşê Îran û Iraq'ê, li ser hêllê Kurdistan tên domandin. Ev yek sitem û zorbazî û talan û wirankirina hêza gellê Kurdistan girantir dike.

# ARMANCA XEBAT Û TEKOŞÎNA AWRÛP'Ê Û ÇÎMA DU FEDERASYON?

Bê şik, ne tenê di vê demê de, an jî di ev dema har de girseyên gelê Kurdistan terkederê welatbûne. An ev macir'î ne tenê ji ber taybetên dema har pêkhatîye.

Lewra: bingeha macirbûna girseyên gelê Kurdistan heye. Ev sebebên bingehî, ji her hêlî va pêwîstin. Ger ev sebebên bingehî nêyin zelalkirinê xebat û tekoşîna Awrûp'ê û pirsgirêkên macir'an û rêyê rast nayên dîtin. Xebat û tekoşîn têkûz nayê. Li ser rêya rast na meşe. Vejînandina vê kêfşkirinê gellek pêwîst e.

Tê zanîn ku, macirbûna girseyên Kurdistan ne nûye. Ji demên ber'ê va ev yek heye. Bi zanistî tê domandin. Bi hoyên Kurdistan û bi pêkanînên qolonyalîstan ve girêdahî ye. Macirbûna girseyên kedkarên Kurdistan, hê ji salên 60an ve berdewam dike û amancê domandina van yeka hene. Tişteki ji ber xwe û tewlî-hev nîne. Bi Kurtî; parek ji parvekirin û talankirina ked a Kurdistan e. Rastî, ev yek bi xwe ye. Anî talana kedê ye. Rê ya qelskirina civak û netewî ye. Tunekirin, helandin û amancê parvekirina netewa Kurdistan tê meşandin. Lewra; bi pêşketina hoyên objktîfî ra çin û tebeqên nû-dem, li civakê, pergalên nûh digrin. Bi teşe dibin. Bi taybetî û kar û barên nû-demî dikemilin. Taybetê nûh digrin. Tekoşîn a çin û netewa, an tekoşîna rizgarî ya netewî û civakî xwe li vi bingehî di sipêrin. Ev hêza nûh, di be sipara tekoşînê. Ev sipartek ji tekoşînê re di be hîm. Û ev sipartekeka bingehî ye. Hêza tevgersaziyê ye. Ji bo destpêkirina tevgersaziyê dewlemendî ya hêza siparê gellek pêwîst e. Ev hêz çiqas dewlemend, gewre û hîm girtî be, derbûn girsgirêkên civakê û bişkaftina pirsgirêkên netewî û gerandina tevgersaziyê, hewqas bi bingeh dibe, hewqas hêsan tê.

Hê ji derbûna çînên nû-dem va karbidestên qolonyalist qelskirina bingeh û parvekirina hêza sipartinê meşandî ye. Rê ya, hêzbûn û dewlemendîya çînê herdem girtiye. Vê rêyê bi bend kirî ye. Bi talana sererd û binerd va, hêza keda erzanî ya Kurdistan herikandiye derva. Li hêllên biyanî civandiye. Li Tirkiyê ji hev tar û mar dike. Bê teşe dihêle. Di hoyên bêrêyî de jiyan dide domandin. Bêçare û belengaz dihêle. Ji xeynî talan û herikandina Tirkiyê, karbidestê qolonyalist vê hêza keda erzanî, girseyên kedkarên Kurdistan mina "eşyakê" bi rûreşî difroşe karbidestên biyanan. Ji Awrûp'ê, ta welatên Afrîqi û welatên ereb'a, vê ji bo mafên xwe pêktîne. Bi sayên pêkanînên xwe yê parvekirina girseyan û cinên civakê "bihn" distîne. Him wan ji tengasîyên abora xwe ra kanî ya "dowiz"ê dihesibîne û vê yekê bi kar tîne. Ji hêlla din va jî; li ser pişt û milên girseyên macir, amancên navnetewî bi têkilîyên paşverû, pêkanînên rûreşî kar tîne. Civandina vê girsê ji xwe ra dike hîm. Politiqa dewletî li serê sazdike. Bi sazûmanên xwe li derva paşverûtî, tevgersaziyên paşverû û refên faşist xwedî dike. Wan di temîne. Hêza macir, girseya gel; dibin sitem û zerpên giran de dihêle. Li gora mafê hundir û gor mafên navnetewahî, pêkanînên tabandinê. Li ser girsa macir saz dike. Nexasîm, di vê demê de, li ser girseyên macir, girsa kedkar, û li ser refên xwendevanan zorbaziyên qolonyalista girantir bûne.

Ji pêşketina xebat û tekoşîna dervahî welat, û ji ber tewrên dij mirovanî, meşandina zilm û zorbaziyên tazî, eziyet û lêdanên eşkere û tengasîyên aborî, siyasî hwd. karbidestên qolonyalist, di rewşa navnetewahî de, tengasîyên xuyanî ji her alî ve bi kûrî dijî. Bi sebebên di va, zulm û zorbeziyên karbidestê qolonyalist a Tirk, cunta faşist li dervahî welat jî, bê serî di dome. Pêkanînên 12 ê Êlûnê yê cunta faşist li van hêlla jî berdewam tîne. Wek di kuştina Nûbar Yalim de, kirinên xwe gihandîye qeysa mirov kujiyê. Di derheqên gellek şoreşgeran de, fermanên girtinê derdixe, wan di xwaze bê fesal bihêle. Bo vê yekê, bi her rengên rûreşî tevgersaziyê pêktîne. Xuyaye ku cunta van yeka ji xwe ra rê dibîne. Ji xwe, rojnamevanên berdevkên cunta faşist ne digotin. *"Di bi ku 12 ê Êlûnê li dervahî welat û nexasim jî li Awrûp'ê saz bive. Rê ya her tiştî çewa ku hebe rê ya melisandin, bêkeys û bê fesalhiştina van xayîna ji hene... di tarîtîyan de bi gulên kor... texsîyên ji neditî ve..."* û, dem bi dem ev jî devên karbidestên cunta ji hatin diyarî. Di pêvajoka xebat û tekoşîna dervahî welat de ev rê girtin, meşandina vê rêyê bi pêkanînên cunta hê zelaltir bûye. Ji bo tekûzkirin û pêşxistina xebat û tekoşîna dervahî welat, tevgergirêdana girseyên macir, hê kûrtirkirina tengasîyên cunta û zerp û zorbazîyên qolonyalist derî qada navnetewahî û bi alema demokrat zelal bên, ev hoyên tên jiyandin, pêwîstî û giranî ya xebata Awrûp'ê, derdixe meydanê. Pergalên xebatê hêllê pêwîstî digrin.

Berî van kifşkirinan em dixwazin bi kurte-birî li ser hoyên Awrûpê bi sekinin. Lewra, pişkavtina vê pirsgirêkê dîsa ji bo pergala xebatê û li tekoşînê re girîng e. Îro ev welatên navçe, tengasîyên kûr, fireh û herhêlî dijîn. Di nav tengasîyên giran da ne. Ya rastî tengasî ya çarenînî dijîn. Li van navçeyan berkêşînî sist maye û disekine. Di rexê berkêşînî de roj bi roj kargeh têne girtinê. Hejmarên bê kar'an bi milyonan tên ziman. Û ev hejmar roj bi roj mezintir dibe. Rewşa jîyana kedkarên hêllê diguhure. Mafên ku bi saya tekoşînên demên bihurî hatine sitendin, zûl bi zûl, ji destên kedkaran tên derxistinê. Li van welatên navçe, herikandina ber paşverûtî ya bi hundur ve aşkere xuya dibe. Paşverûtî tê xwedikirin û diherikin paşverûtîyên siyasî. Di ev rewşên giran de ne tenê kedkarên navçe ya, bi giranî kedkarên macir, dibin zerp û sitemên giran de dijîn. Çîna kedkarê navçeya ji her demî zêdetir piştgirtin û parasvanî ya gelên bindest bi kar tîne. Lewra ji ber gellek sebeban ji bo piştgirtin û hevkarî ya hêzên pêşverû hoyê demê û yên Awrûp'ê bi her awahî gihane û kemilîne.

Ya girîng eve xebat û tekoşînên rê zelal bi amancên bingehî va bên meşandin. Pirsgirêka girîng kifşkirina vê yekê ye. Karanînên van yeka ne.

Bê şik, bingehê amancên xebat û tekoşînên li Awrûp'ê bi bingeh û amanca Tekoşîna Rizgarî ya Netewa Kurdistan va girêdahî ye. Û jê nayên qetandin. Çewa ku, bê sazkirin, bê tekoşîn bê pêşxistina berxwedana tekoşîna

rizgarî ya netewî, xebat û tekoşîna Awrûp'ê ne dibiya. Ewê bê sipartin û hebûna tekoşînê, xebat û tekoşînên dervahî welat bê bingeh bi mana, bê sipar bi mana, ya rastî çewt bûna, bi rawestiya, şulî bi ma, û pûç biketina. Xebat û tekoşîna Awrûp'ê çiqas bi pergal û bingehên tekoşîna welat re girêdahî be, bi vî bingehî bê sazkirin û bi amancên wê, bi meşe, bi hoy û hewcetiyên tekoşîna rizgariya netewî teşe bigre ewê hewqas kêrhatiye tekoşînê û parazvanê mafê netewî û kêrê welat be. Ewê rê ya wê tekûz be, na litime, rênas bive. Ji pirsgirêkên girseyên kedkar re bersîvê tekûz bine. Rê ya rast û bingehî bi de nîşandan. Rêya xelasî ya rast dîyar bine. Berpirsiyarê xebat û tekoşîna hêllê bi cih were. Û ewê li hêllên navça navnetewahî tekoşîna rizgarî ya Kurdistan bi mafên civak û netewî bide naskirin. An ewê vê hêllê ji tekoşîna şoreşê ra bike cepha paş. Ev bi zelalî xuya ye, amanca xebat û tekoşîna Awrûp'ê civandin û tevgersazi ya girseyên kedkarê Kurdistan e. Nasdarî ya tekoşîna gel ê me ye. Piştgirtina me demokratî ye. Lê ne hevkarî ya karbidestan, amanç girtina sitatû ya "multeci"tî ye. Ne jî di bingehî de pere... hwd. heye.

Ji ber têgihiştina berpirsiyarî ya xebat û tekoşîna hêllê tekûzî bi kemile, di bi ev yek ji hişên me dernên ku; iro hêza qolonyalist şer li hemberê gelê me dikemiline. Bi hezaran welathiz, şoreşger û girseyên kedkarên Kurdistan dagirtiye girtingehan. Bi rastî, welatê me kiriye mina girtingeha ser-vekirî. Bi dehan welathiz û şoreşger bi berikan bi destên leşkerên qolonyalist û di girtingehan de bi eziyet û lêdanên hovberî tên kuştin. Welatê me kiriye wekî qutîyeka girtî. Têkiliyên bi dervahî welat re biriye. Pêkaninên neditî di vê rewşa giran de, bi cîh tine. Rewşa kêraninên şerî bi eşkere tîne ziman. Bi vê pergalê, zilm û zorbazîyên hoberî bi amanca helandin û tunekirina netewa Kurdistan ve di meşine. Bê dûve-dirêj, rewş bi zelalî xuyanî tîne ku berpirsiyarîyên welathizî û kar û barên tekoşîna dervahî welat bi piranî ye. Di vê demê de pêkanîna wan pêwîste. Ji rexek pergalên xebat û tekoşîna hêllê bi van taybetan va girêdahî ye.

Nexasim di ev dema har de, bi girêdana taybetên Tekoşîna Rizgariya Netewa Kurdistan ve, pêşxistin û zelalkirina rêya xebat û tekoşîna Awrûp'ê, berpirsiyarîyeka giringe. Gotin li pêwîstiyê vê yekê nabuhurin. Lê, pêkanîna pergalên berpirsîyariya demokratî, şoreşgerî û welathizî ji hewqasî pêwîste. Pergal û kirtên berpirsîyarîyê ji xebat û tekoşîna Awrûp'ê re di bin mêzin û wêne. Lewra yên rêya xebat û tekoşînê zelel dikin ev pergal û kirtene. Bar û berpirsiyariyên hêlla pêwist, bi her rengên pergal û kêrta hoyê meşandin. Qet bi pergalên şûlî nayê karanîne. Li vê derê ev yek deri pêşiya me dibe. Pergal û kêrtê welathiz û demokratê Kurdistan çine? Ji ber pêwistiyên van yeka ji em dixwazin bi kurtî li ser piv û pergalên welathizî û demokratî ya Kurdistan, ku bi hoyên Kurdistan ra têşe girtine, li ser wan bisekinin. Lewra ev tên şulikirin û nayên naskirinê. Bê şik, piv û tewrên demokrat û welathiziya di bin hoyê jêrdestiya gel û welatê me de pergal girtine, bi zelalî xuyaye ku, hemberderketine –netenê bigotin– sazûmana serdeste. Bi girêdana tevger û tekoşînê, hemberiya biyanîya serdest e. Dijberîya sazûmana qolonyalist e. Hevalbendiya tekoşîna rizgariya netewî ye. Piv û tewrên demokrat û welathizî cihgirtin û parastina taybetên tekoşînê û rizgarîya netewa Kurdistan e. Îro, ev yek bi kar û barên giran kemilîye. Bi gotinek din; hebûna hêza xwe, taybetên hebûna xwe, pergal û tewrê xwe bi hoy û hewcetîyên tekoşîna şoreşa Kurdistan re, kêranîne. Di vî hêlî de kemilandine. Ger tenê ew xwe bi pirsirêkên civak û netewî re dibîne, tenê ev reng, rengê demokratî û welathiziya Kurdistan re hêza xwe ya zanistî û kêhatinên xwe ji bo bişkaftin û bersivên pirsgirêkên tekoşîna civak û netewî bikar tîne. Bi kurtî, bi tevgersazî, kirin û bi nêrîna xwe hemberê qolonyalîstî û paşverûkên welat radiweste û hêza parasvanê taybetên netewî û parasvanê mafê welat e. Ne hoyên biyanî ji xwe re piv digre. Li hoyên biyanî dev ji tewr û piva xwe bernade. Li ser bingehên piva xwe pergal li van hêlla digre. Tenê bi van kêrt û pivan, kêrhatê xebat û tekoşîna tê. Di vê hêllê de kar û barên giran yên demokrat û welathizên Kurdistan hene û ev kar û bar hemberî pêşverûyan radiweste.

Gelo, bi van kar û barên giran ewê xebat û tekoşîna hêlla Awrûp'ê an rexên demokrat û welathiz amancên xwe, li ser kîjan xebatên bingehî û bi çi pergalî bi meşînin. Bê şik ev karanîn ewê bi xebatên diva lê, bi giranî ewê bi xebatên demokratî bi kar û bar bên. Ger ev bi awakî din bên gotin; li gohr hoy û şertên van welata û bi girêdaniya pêşketin û hoyên Tekoşîna Rizgarî ya Netewa Kurdistan va bi kar were û pergal bigre. Nexasim, iro bi xwe pêwîstî ya vê yekê heye ku; rexên demokrat û welathiz di kar û tekoşînên xwe de ewê, jiyan domandina li Awrûpê pêşnîyarê wan girseyên macir bikin û ewê vê rê yê ji wan re rast bibînin? An, rê ya welat, rê ya tekoşîna rizgarî ya Kurdistan ji kedkarên macir re vebikin û vê nîşanbidin? Rê ya rast û tekûz, rê ya xelasîyê bê şik, pêşberkirina rê ya Tekoşîna Rizgarî ya Kurdistan e. Tenê ev rê, rê ya felatbûnê ye û rêya rizgarxwaza ye. Pêşnîyariyên rêya bi xwe, tewrên rizgarxwazî û melisandinê ji hev û dû, di qetine. Ger xebat û tekoşîna Awrup'ê, li ser him û tewrên rizgarxwazî û tekoşînê bi kemile, ewê berpirsîyarîyên tekoşîna welat here serî. Amancên xebat û tekoşîna dervahî welat bi cîh wer'in. Ewê tekoşîn di her hêllên jiyanê de bi hêz bibe.

Tê zanîn ku ev xebat û tekoşîna hêllê ne bi serê xwe ye. Di bi ku, bi vî awahî nê ditin. Ji ber hoyên welattaybetên demê giranî ya xwe li vê derê girtine. Bi rewş û xemilandana taybetên demê girseyên Kurdistan li vê hêllê civiyan e. Giranî ya xebatên refên demokrat, welathiz û hêzên şoreşger herikî ye hêllê. Van der'a ji bo amadekarî(!) ya tekoşîna welat re, hêlla sazîyê û amadebûnê dibînin. Bi pergal û pêkaninên cudahî xebatê dikin. Ev xebat û tekoşînên yek alî; li hemberê hêzên qolonyalîst gellek kêm dimînin. Di derheqên neerîniyên xebat û tekoşînê de dernakevin. Ev xebat û tevgerên yek alî, bi xwe, li hemberê xebat û tekoşîna hevkarî bend avadikin. Bi kêm-dengî, xwe bi kar û bar tînin. An, bê cuda kirin li her bûyer û nûçên Kurdistan xwedî dernakevin. Ev ne tewrên erînî ne. Ne tewrê dilşabûnê ye. Ne jî bi taybet û berpirsîyarî yên demê xemilandî ne.

Em pê bawerin ku, hêzên demokrat û welathizên Kurdistan, bê bendî û meşandinê dijminahî, bi kar û barên demê û bi amanca bingehî ve, dikarin li dora bendên xebat û tekoşîna Awrûp'ê, bi civin. Û tekoşîna hevkarîyê




*Bijî tekoşîna me ya liberxwedana rizgarîya netewî.*

bi meşinin. An ji yên tên meşandin piştgirti ya wan bikin. Hevkarî û tekoşîna şiriki, yekiti û hevalbendî û taybetên demê, di nav xwe de, bi kar binin. Ev, di xebat û tekoşîna Awrûpê de mîna sitûna qunc pêwîst e. Ne tenê daxwazên hêzên şoreşger, welathiz û refa demokrat e daxwaza girseyên gel ê Kurdistan e. Bivê-nevê ye. Taybetên dema dijware. Ger rewşa beşên Kurdistan berçav bên ev dibin rêya bive-neve. Di vê rê yê de, tewrên du-dili û ne zelal, xwaro-wiço û dijminahî ne tewrên rastin.

Bi berpirsiyariyên şoreşgeri û welathizi, bi zanistî ya taybetên demê, li ser bend û nêrinên zelal û tewrên eşkere, ger, piştgirtina, şoreş a Kurdistan û nasdari ya dozê, amanc be, wê çima, hevkarî tekoşîna şirikî di nav rexên welathizên Kurdistan de, saz nê? Çima, ji bo tewr zelali û yekitiyek ji tekoşîna hevkariyê re xebat çê nebe? Tewrên zelal, amancên xuyanî di kijan deman de, tên meydanê...! Em bawer dikin ku, pirsgirêkên hêllê, hoyên Kurdistan û taybetên demê bi xuyanî ketin e. Û ji bo vê gihane.

Bi dozbaweri ya xwe ji bo ku, hevkarî, piştgirtin û serrastkirina têkiliyên komel û refên demokrat ên Kurdistan saz bê, me bê sekin pêşniyarên hevkarî û tekoşîna şiriki, pêşber anî. Û van xebên xwe domand. Daxwaza çandîtî ya hevkariyê bi gavên dem-dirêji, da nişandan. Ji destpêka xebata hêllê ve, pêşniyarê hevkarî û piştgirtîyê me kir. Hê ji destpêka sazi ya –Federasyona Komelê Kurdistan -li Swêd– va, em li ser vi tewrê xwe sekinîn. Daxwazên hevkariya bi nivîsî û devki pêşniyarê "federasyon"ê kir. Lê, tu tewrên erînî ji "federasyon"ê nehate dîtin. Lê bi kongra lihev-hati ji "federasyon", tewrên erînî nişan ne da. Ji bo ku, xebata hevkarî û destbiraki ya komel û refên pêşverû di yek federasyoneki de saz bê, me têkiliyên xwe ji "federasyon"ê ne biri. Bi kongra li hevhati ji, ev tewr hate domandın. Ji ber keysbazi, bendî û dijminahîya komelên Kurdistan û domandina tewrên ne demokratî, me sazkirina xebatên federasyon a xwe rêyeka bive-neve dît.

Bi me hebûna du federasyona ne tiştek başe. Ne ji li gohr taybetên demê ye. Bi kurtî rewşeka ne erînî ye. Zerarê digihêne Tekoşîna Rizgarî ya Netewa Kurdistan û pirsgirêkên yekitî û hevkariyê. Lewra, li ser bendên demokratî bersivanina vê yekê ne mumkune. Hêvî ya me ku, "federasyon" ewê dev ji keysbazi û tewrên hesan, dijminahî û bendîyê berbide. Lewra ev, hêsanî bi xwe ye.

Eşkere ye ku em, dev ji hevkarî û tewrên piştgirtinê bernadin. Yekitî ya her du federasyona daxwazên me ne. Di vê alî de, emê herdem hevkarî û yekîtî ya hêllên welathizê Kurdistan li ser bendên xuyanî berpêş bixin. Em bawerin ku ewê refên "federasyonê" li ser pêşniyara yek federasyonî bisekinin û berpirsiyariyên xwe ewê bi cih binin.

Ji bo xebatên hêllê û yekitiyên federasyona, emê di hejmara di du yan de proxrama yekitî û hevkarîyê bi weşînin. Berpêşê; rexên demokrat, welathiz û hêzên şoreşgeran bikin.

# NEWROZ DANEZANA ÇÎYE?

Newroz, efsaneye. Lê, efsana berxwedana gelê me ye. Bûyere. Bûyera rêvekirina hebûnê ye. Hebandine. Lê, hebandina hebûna gele. Lidarxistina tekoşînê ye. Serhildana arinca gihiştina demê ye.

Bellê, Newroz, di destpêka dîrokê de, hatiye afirandin. Bûye bûyera afirandinê. Lewra, di tariya pêvajoka dîrokê de imparatorîya Asûr, li ber pêşketina gelan, derketin û gihiştina demê mîna kelekî, nahêle gel bigihijin ronahîyê. Di vê dema dijwar, hengama hebûn û tunebûnê de, gelê me tekoşînek dirêj û dijwar, li hemberê imparatora koledar meşandiye. Vê bendê ji ber xwe û ji ber gelan rakiriye. Bi tekoşînên dijwar rêya hebûnê vekiriye. Newroz ev rêvekrine. Bûyera vê pêvajoka dijwar e. Navê tekoşînên pêvajokê bixwe ye. Û pêvajok bi navê Kawa xemiliye. Pêvajok bi navê Kawa û Newroz tê zanîn. Navên wan bi serfirazî tên biranîn.

Newroz, nîşana serhildana gelê me ye. Mana Newrozê ji kûriyên dîrokê geştê, şewa dide ta dema me. Ku, navên Kawa û Newroz ji gelê me ra bûne kaniyê pezn û serfiraziyê.

Navên Newroz û Kawa; daxwazên di kûrîyên dilê gelê me de hêlin vegirtine, daxwazên pakiyê, xweşî û rastiyê, daxwaza serxwebûn û azadiyê didin nîsandan.

Dîsa navên Newroz û Kawa; bûyerên bi rûmet didin bîranîn. Bîranîna pêvajoka dîrokê û birxistin û têgihiştina mana bûyera pêwîst didin nîşandan. Ji bo pêkanîna daxwazên bi rûmet, navê Kawa û Newroz'ê; serhildan û berxwedanê tînin ziman. Ku, gelê me vê bûyera pêwîst ji bêçînî ku derbasî civaka bi çîn dibe pêktîne. Bi kemilandina bûyerê derdikeve qada dîrokê. Ku, di vê demê da, gelê me arincên gihiştina demê dikişand. Bûyerê dike, danezana (belge) ezm û daxwaza hebûna xwe.

Îro hê bi hoyên dijwarî, dibin nîrê qolonyalîstî de gelê Kurdistn arincê gihiştina demê dikişîne. Dehaqên nuh û cunta faşista qolonyalist li hemberê gelê me şerê tunekirinê di domînin. Li pêş gelê me radiwestin. Bi hemû rengên zilm û zorbazîyên dema hovîtîyê va, di dema me da dixwazin pêşketina gelê me bidine seknandinê. Lewra dijmin û nenasên Kurdistan, di vê pêvajoka dijwar de taqeta qewimandin û berxwedanê ji gelê me nedikirin. Di hay û baya wan de, ji nuh ve afirandina nuhbûnê, tekoşîna rizgariyê derbas ne dibû. Lê ji ber gelê me gihîşte tevgersaziya xwe ya siyasî, rêberîya karkera û Tekoşîna Rizgariya Netewa Kurdistan, ji her alî ve bi deng kir, li ser bingehên nuh li hemberê qolonyalîstî û paşverêkên welat rawest. Pêwîstîya hêz û hebûna xwe netenê di Rojhelata-Navîn de, di nav qada navnetewa de derxiste berçav, zilm û zorbazîyên qolonyalîsta bêserî bûn. Dijwarîyên pêvajoka tekoşîna gelê me derkete qadê.

Di vê rewşa dijwar de, tekoşîna berxwedana netewa Kurdistan, bi bûyerên dîrokî, bi berxwedanên bê emsal hate afirand. Û li ser van yeka bû tirs, kete dilê qolonyalîsta. Hatin û bingehê qolonyalîsta jihev hejand. Bû pincek li hemberê emperyalîzmê. Bi saya ev berxwedanê tekoşîna serxwebûn û azadiyê ber bi navça şoreşê diçe. Rûmetî û hebûna xwe di qasa navnetewî de dide zanandin.

Ev yekan bi xwe afirandin û jînbûna Newrozê di pêvojoka me de derdixe meydanê. Pêvajoka dema Tekoşîna Serxwebûn û Azadiya Kurdistan bi Newrozê xemiliye. Rûmet û taybetên Newrozê li ser hîmên rast hatine jiyanê. Ev tewrên berxwedanê ezmê rizgarxwaziyê di her hêl û derên Kurdistan de ji nuh ve axa Kurdistan jîndar kirine. Û ev yek di 21 ê Adarê sala 1982yan de di tarîyên zîndanê lêşkeriya Dîyarbekir de, endamê KM ya PKK bi şehidketina hogirê bê hempa, bi berxwedarên Mazlum DOĞAN bê pêl û bêl bû ye. Û mana Newrozê hê tekûz bû ye. Newroz mana xwe ya rast û hemdemî girtîye. Ku ne tenê tarîyên zindanê tarîya li ser welatê me bi berxwedan û dengên Tekoşîna Serxwebûn û Azadîya Kurdistan hatiye qelişandin. Rê ji gelê me ra ronahî bû ye. Rêber û nîşana gelê me Mazlum DOĞAN bûye sîmbola berxwedanê. Navê xwe, ezm û berxwedarê bê hempa li vê pêvajokê kiriye. Di hoyên dijwar, bin eziyet û lêdanên giran de bi tewr û jiyana xwe, mana Newrozê mana navê Kawa afirandiye. Bi jiyana xwe danezana Newrozê jindarxistiye. Bi afirandina danezana bê emsal ji bo gelê me berpirsiyarîya xwe ya dîrokî aniye cih. Û bi vê afirandina danezanê, bi vê bê emsaliyê rûpelên dîroka Kurdistan nexşandîye.

Domandina danezana nîşana hebûn û berxwedanê, sipartiye rizgarîya Kurdistan. Berpirsîyarîya welathizî, pêşverûtî û şoreşgerî domandina vê bi xwe ye. Ji bo sîmbola serxwebûn û azadîyê, mizgîna berxwedan û hebûnê, nîşana bihar û nûjenîyê, bi agirên Tekoşîna Rizgarîya Netewa Kurdistan Newroz'ê; bi hevkarî û piştgirtîya welathizî pirozbikin, bi mana rast bi xemlinin. Gazî hemû refên pêşverû û welathiz dikin.

* **Bijî Newroz!**
* **Bijî Kawayê hemdem Mazlum DOĞAN!**
* Bijî Tekoşîna Berxwedana Rizgarîya Netewa Kurdistan!

# 10 MİLÎTANÊN ŞOREŞGER HATİN KUŞTIN!

Di 18-20 ê Mijdarê de li mintîqa Mêrdîn-Şirnaq-Silopî li berdirêjiya sînorê Tirkîyê û İraqê di çemê Hêzik de herçuqasa jimara wan nê zanin, lê li gor bihîstinê, li nava 7-10 cesedên milîtanan di avê de hatiye dîtin. Ev milîtanan dema ku tên kuştin, davêjin avê, lew cesedên wan nên naskirin û kîjan xwedîyê çi navîye, lê li gor pêkhatina bûyerê kesên PKK ne.

Li gel vê bûyerê di 21-22 Mijdar di rojnama Hürriyet'ê de mesele ji hêla MİT de ronak bû, li gor agahîya wan "milîtan dema ji sînorê İraq'ê derbasî Tirkîyê dibin yan ji Tirkîyê derbasî İraq'ê dibin dikevin avê û difetisin" bi vî awahî derewin derxistin holê û dixwazin vê bûyerê binerd bikin.

Bûyer bi vî awahî çêbû ye:

Di dawîya meha Cotmeh'ê de, refek ji Partizanên PKK, ku li Kurdistana Başûr faaliyet dimeşandin, dema dixwazin ji mintîqakê derbasî mintîqake din bibin, ji hêla ajan û muxbirên hêllê ve giliyê wan tê kirin û dikevin kemina dijmin. Ev milîtan ev'in: Şahin KILAVUZ, Cahit DAYAN, Fuat ERTÜRK, Weysî ŞİMŞEK, Weysi HANTAŞ, Hasan ÖZÇELÎK, Musa ÎLK û Beşir AKSAY.

Di ev şerê di nav milîtanên PKK û hêzên kedxwaran de herçuqas çend milîtan xwe xelasdikin jî, 8 milîtan hatin qetilkirin.

Çêbûna bûyerê bi vî awahî raste. Ji ber ku çend bûyerê din wek vêya berê bûbûn. Û ev azin (metod) dîyare ku ji hêla kedxwarên Tirk de hergav li hemberê partizanên PKK bûye azinek berçav. Herwekî tê zanin 9 Êlûn 1982yan de li bajarê Bozova Urfayê li gundê Koçhisar ji hêla komando de weke vê bûyerê Partizanekî PKK ji gellek lêdan û hingavtin şûnde, li gor birînên li ser canê wî hatibûn dîtin hatibû kuştin û avêtibûn ava çemê Ferêt. Dîsa 9-10 Êlûn 1979an de li Sêwrekê gundê Axşûn ji hêla kontrgerîlla û çetê feodal eşqîya Partizanên PKK Cuma Tak, Cuma Bozkoyun, Sadun Demirkoç, Ali Çat, Abdurrahman Manap tên kuştin, weke vê bûyerê cesedê wan avêtine Ferêt û bi awakî nenaskirî derdikevine holê.

Li hêla din beşê ku bûyer lê derdikeve gellek bûyerê wek vê çêbûne. Mesela komando, kontrgerîlla herdem li gel zulmê dikin, bi hejmareka bilind şoreşger û welatperwer qetil kirine. Herwekî were birê di 13 Tebax 1982yan de partizanê PKK Suleyman Tuğcu dîsa li wî beşî ji hêla hêzên komando de li nav wan di şerekî de şunde ronakrewan dibe. Di meha Cotmeh û Mijdar de tîmên komando û kontrgerîlla teror û êrişên ku dajon jiberxwe şer sadir dikin û ta vê demê qedera 20 kesên welatperwer di van bûyeranan de bi taybetî hatine kuştin, ji hêla agahvanan de tê zanîn.

Bê guman qet yek ji van bûyeranan ne jiberxwehatî ye (tesadufî), dijî vê, ji hatina rewşeke konevanî ye. Beş him bi erdnîgarî (coxrafîk), û him jî ji ber ku sînorê 3 dewletan di nava xwe de dihêle, ji berya konevanî û him jî ji bo merkeza Kurdistan'eke parvebûyî, ji bo ku beşê wê yî nîvek tîne ziman, bi hêla girseyî di rewşek stratejîk de tê dîtin. Ji ber vê giringîya wê herwekî li hêla Takoşîna Rizgarîya Neteweya Kurdistan, di barîya stratejîk de ji bo tekoşîna rizgarîya gellên Tirkîyê pêwîstîya xwe bilinde. Ji bo vî awahî ji çûnê ta îroj hêzên welatperwer şoreşger tekoşînên xwe li vî beşî amadekirine û li vê derê pêşve birine, û xwestine bisipêrin vî beşî. Li hember vê rewşê emperyalîzm, kedxwarên Fars, Ereb û Tirk ji ji bo vî beşî û gellê wî ji pêwîstîyên şoreşgerî derîne û ber bigre, bi hêzên komando xwinrêjîyê birêdixin û tekoşîn bereberî hêzên welatperwer û şoreşger danîne.

Nemaze tiştê ku vî beşî têdigerîne pêşdehatinên ji 1970yî ta 1980yî bejn da; şerê İran û İraq sazîya İran'ê yî anti-Amerîka û pêşveçûna Tekoşîna Rizgarîya Netewa Kurdistan sazîya emperyalîzm û kedxwarîyê li ser wî beşî bêzarkiribû, lê li paralelî van pêşveçûnan li vî beşî emperyalîzm û hêzên paşverû ji bo beş ketibûn rewşeke talûke. Hereketa şoreşgere ku haziriyeka xwe ya girîng amadekiribû û gihiştibû tenga pêşdehatinek dîyarî PKK, û nemazeyên destdirûvî di vî beşî de xebata xwe dîyarkiribû, dike bêhnek remza hêza Tekoşîna Rizgarîya Netewa Kurdistan biafirandina. Hêzeke şoreşgere ku pêş de hatiya û xwe dide parastina vê derhatinê, herwekî saha Lubnan'ê ya ku hêzeke tekoşîna xwe wundakiriya ji hêla girîngîya jiyana kişandina tekoşîna rizgarîya gellê vî beşî li holê bû. Tê zanîn ku şoreşger ji bo pêşveçûnek wanî derbînin holê ketin nav karûbarekî giran.

Li gel ev hemû nemazeyên xwe li vî beşî potansîyela şoreşgerî ya ku hat heciqandin, tunekirina pêşveçûnên şoreşgerî û li hember tekoşîna rizgarîya gellên vî beşî ji bo hêzeke dijşoreş pêş de binin û bitêkilinin, ji bo emperyalîzmê cuntaya Tirke faşîst û paşverûtîya vî beşî polîtîkeke hevkar di domînin; di beş de, CÎA, MİT, SAVAK û istixbarata İraq ve dixebite. Hêzên "Çewîk" yên USA ji bo hêzeke êrişkar anine vî beşî û bi taybetî li dijî tekoşîna rizgarîya neteweyên gellên vî beşî û yê Kurdistan wê bikarbînin, lew bi cihkirine; li hawirdor û cihê vî beşî de 10 balefirgeh (havaalanı), li vêderê her babet firokên şerê ku hêsanî dikare dakevin û rabin, ji bo vêya pêkbînin, vêgavê dest bi xebatê kirine. NATO, USA û cunta Tirke faşîst bihevkarîyên xwe li vî beşî tîmên kontrgerîlla birêxistine û livên (faaliyet) xwe diajon, hejamara hêzên komando herdem zêde dibe. Ji vê cihê paşverûtîya vî beşî ji ji hêla van hêzanan de bi hêzên milîs tên civakirdin, teng û dahfên ajan û muxbira bi hêz dikin.

Ji hêla van hêzanan de di vê tevgêra şoreşgerî ber lê bê girtin, li gel zulm tê kirin, komplo li dij Hereketa PKK û şoreşgeran sazdikin. Ev bûyera ku li ser çemê Hêzik çêbûye jî, komploke bi vî rengî amade bûye û ji hêlên milîs û ajanan de fêde hatiye girtin, lew kontrgerîlla bikaranî. Ancax ev bûyer ne bûyerek lihevhatîye, ji bo partizanên PKK bi awakî zanîn hatîye hazirkirin. Lewra xeta liberxwedana şoreşgerîya PKK û hêza wê ya hereketa girseyên gel dixirê, ji bo potansîyela rizgarîya netewa bilindîya Kurdistan ve bûye yek û rê ji pêşveçûna şoreşgerî re wê girîng veke, wê hêzên xwesiparvan, ajan û muxbir

cuda bike, û bi vana jî namîne li ber guhertinên giring û dîyare wê bibe bingeha pêşveçûnê. Bi vê rewşê PKK ji bo emperyalizm, kedxwariya Tirke faşîst û paşverûtiya beş talûkake giran û ciddî şanî dide. Ji bo ev hemû hêzanan rê û destûrê nedin pêşveçûnek wanî û ber li livbaziyên PKK bigrin, wê komployên bi vî rengî di demên tên de hîn zû bikin, pirbikin û bikar bînin, evya ji vê bûyera dawîyê carek din dîyare.

Ji bo di Tekoşîna Rizgarîya Netewa Kurdistan de pêvajokeka nuh vekin, di her karûbarî de, piştî karanînên mehan, bi sebir, fedekarî û bawerî tekoşîn dan û xwe ji bo vegera welat amade kirin, û li ser rêya vegera welat bûn. Lê wekî nexweziyên ku di her tekoşînên rizgarîya netewan û çînî de dibe ku pêk bên, di yek ji van de me hogirên xwe şehîd dan. Em nasdarkirina tekoşîn û jîyana van Partizanên PKK, berpirsiyarîka giring û şoreşgerî qebûl dikin.

---

Nav : *Şahin Kılavuz.*
Navên bikar dianî: *Kenan, Mahir.*
Cîh : *Ankara*
Dîrok : 1958.
Cîhê Nifûsê : *Erzurum - Karayazı - Yemlik.*



Şahin Kılavuz bi eslê xwe Erzerûmî ye. Ji maleka belengaze. Ji dema destpêka bizrê tevger û Tekoşîna Rizgariya Netewa Kurdistan dihatin avêtin. dilxwestina tekoşîna berxwedanê lê çêbûbû. Dilxwestina ber bi şoreşgerî, hê ji salê 1971î ve destpêdike. Bûyerên vê demê gellek tesîr. li hogir Şahin Kılavuz kiribûn. Di tevgerên hemberî faşistan de li sefên pêş tekoşîn danîbû.

Dema Tekoşîna Serxwebûna Kurdistan. di pêvajoka gihiştina îdiolojîkî de bû. anî di salên 1975an de Şahin tevî nav sefên tekoşînê bûbû. Ji bo ku di tekoşînê de hêza xwe hê zêdetir bikar bîne. dev ji xwedenvaniyê berdabû.

Di destpêka tekoşînê de Şahin Kılavuz pêşî ber bi hêlla Qersê ji bo xebatê tê birêkirin. Berpirsiyariyên xebatê bê kêmasî li vê derê pêk tîne. Piştra li Entap û Sêwrek'ê berpirsiyariyên wî çêdibin. Berpirsiyariyên xwe bi ezm û geşiyê di xebat û tekoşîna hêllan de bi serfirazî pêktîne. Çeleqî. mêranî û dilgeşiya xebatê taybetên wî yên bilindbûn.

Yên ku wî nazkiribe. di jîyana Şahin Kılavuz de van yekan bi zelalî didît ku. kesê guhartina civak û dinya xwe amanc girtibe û ji bo vê. bi zanistî. bi ezm û xebatên bê seknandin tevgersazî kar bîne ev taybet giştekî bi hogir Şahin re hebûn û dihatin ditin. Hogir Şahin herdem bi çavên rexnedarî li xwe mêzedikir. Li hawirdorên xwe dirihênt. Li ser civaka xwe disekinî. Lê, neticên rexna her gav di pêkanînên xwe da berçav dikir. Dida jiyandin. Hogir Şahin bi vî tewrî bawerî girtibû. Vê, di hoyên dijwar de. di nav bê îmkaniyên giran de bi xebat û tekoşîna xwe bi cih dianî.

Dema êrîş û zorbaziyên hêza milisên ehlî û zorbaziyên Celal Bucak, bi hevkariya êrişên dewletê. di sala 1979an de zêde bûn. tekoşîna germ li Sêwrek'ê kemilî. bê dudilî hogir Şahin. berpirsiyariya eskerî sitend. Hê ji sala 1975an ve ku têkiliya wî bi tekoşînê ra çêbû bû, mina her kesên Kurdistanê xwe bi van yeka kar û bar kiribû. Ku: ji bo welat şer pêwîst e. Tenê bi şervanî jin domandin rêya kesê Kurdistanê ye. Têgihiştina hogir Kenan li ser vê baweriyê kemilî bû.

Hogir Şahin hatina jîyana xwe bi hatina welat re girêdabû. Bi vê zanistîyê di xebat û tekoşîna Sêwrek'ê da li hemberê hêzên milisê Celal Bucak û li dijî êrişên dewletê bi berpirsîyariya eskerî cih girtî bû. Di rêya gel da bi berpirsiyariya eskerî tekoşînê kir. Di vî alî de serfiraziyan kemiland. Li dijî hêzên feodal û hêza dewletê. li hemberê faşîsta: ajan û xayina nêzkahî 40 tevger pilan kir. Û di nav van tevgeran de cih girt. Berpirsiyariyên van tevgera meşand. Di nav tevgeran de. bi xwe rol girt. Ji van tevgeran pêştir. Hogir Şahin di gellek tevgeran de cih girtiye. Di hemû ablûqe û berberiyên bi dijmin re temsîliyên mêraniyê derxistiye berçav. bi zanistî. bi çeleq û baweriyê hemû ablûqên dijmin şikandibû. Di xebat û tekoşînê de hêza xwe ya kêrhatê tekoşînê di sen'atê eskerî ya şoreşgerî de biryarî û canfêdahî xwe bi dijmin dabû naskirinê.

Hogir Şahin: serfirazî û rûmetên tekoşînê bi pêkanînên xwe bi çavnebarî parastiye. Herdem li hemberê kêmasî û xeletiyan tewrên şoreşgerî daniye. Ji bo hêza partiyê. amancên tekoşînê. û rûmetên tekoşînê cih bigrin herdem bi dilpakî xebatê kiriye.

Di tekoşîna Sêwrek'ê de, di berberiya hêzên Bucak de birîndar bûbû. Bi vê birîndariya xwe dîsa gellek hêzên milîsê Bucak dişkine: zor li wan tîne û bi serbilindî ji vê berberiyê derdikeve. Hogir Şahin ji jîyana şoreşgerîyê 3 car tê girtin. Li Entap. li Ankara û di girtina Sêwrek'ê de eziyet û işkencên giran dibîne. Di bin eziyet û işkencên giran de dev ji tewr û parastina taybetên şoreşgerî bernade. sistî nîşan nade. bi rûmetî van taybeta diparêze. Dijmin li ber biryarî û tewrên berxwedana wî bê mecal dibin. Bi tewrên şoreşgerî binxistina hêsaniya dijmin. hogir Şahin di jîyan xwe ya girtinê de dide nişandan. Di dema girtina xwe ya Sêwrek'ê de piştî 50 rojan ji hepsê derdikeve, bi dilgeşî di nav tekoşînê de cih digre.

Hogir Şahin Kılavuz. li ser van têgihiştinên bingehî xwe kemilandibû. Ji bo gelên kolonî bigihîjin serxweaûnê, afirandina rêxistina berxwedanî. rêyeka bive-neve ye. Ev jî, tenê bikaranîna berxwedana tevahî gel, digihîje rastiyê. Pêkanîna xêza berxwedana partiyê, ne tenê bi kar û barên kadroyên partiyê, ev bi hevkarî û berxwedana çekdariya gel pêk dibe. Şahin Kılavuz di vî alî de, bi zanistî û têgihiştina van yekan xebat û tekoşînê kir.

Şahin Kılavuz hê ji destpêka tekoşînê ve ji bo şerê rizgariya netewî xwe bo kadroyê tevgersaziyê û ji bo rêzaniyê dikemiland. Xwe ji bo van yekan bi kar û bar dikir. Dema ji bo xêza

partiyê ya hoyên nuh bikar bîne berpirsiyarî sitend. Têgihiştibû rola xwe ya afirandina berxwedanê û tevgersaziyê.

Bi rastî, ji bo ku xebat û berxwedanên pêvajokê bigihîjin hêza tevgersazî û bi rêxistinê bikemilin rola van hogira mîna pir'eki pêwîst bû, rola wan gellek giring bû.

Hogir Şahin Kılavuz ji bo Tekoşîna Rizgarîya Netewa Kurdistan bigihîje hêza rêxistinê, û tekoşîn û taybetên nuh xemlbigre xwedîyê berpirsîyar bû. Di şerê hewqas bi rûmet û hewqas dijwar de herkesê ku pê dizanî mirin ne tutiştekiye. Hogir Şahin di nav vî seri de, bi zanistiya vê yekê tevger girêdabû. Di kemîna çemê Hêzik de ji ber bi saxî nekeve destê dijmin bi zanistî rêya mirinê dabû pêş xwe. Çek û destikên wan ji ber ku di avê de şilbûbûn, bikar nedihatin. Di nav kemînê de vegerandin û bi berberi şikandina kemînê ne mumkun bû. Ji ber van sedeman Hogir Şahin di nav ava ku ser sê bejna de diavêje him bi dijmin re şer dike, him ji bo felatkirina refa xwe xebatê dike. Bi tewrên xwe yê qatî Hogir Şahin vê rastiyê derdixe berçav ku; di rewşa bêmecalî de, bê çek û destikan be ji ketina destê dijmin di hişên şoreşgeran de derbas nabe.

Kadroyên ku partîyê derxistibû derva Hogir Şahin di nav van kadroyan da bû. Mîna gellek tekoşerên partiyê di dibistanên partiyê yên siyasî û eskerî de zanistiyê bikar dianî. Mîna piranê tekoşerên PKK Hogir Şahin ji, di hoyên dijwar, bin agirê giran de li sefê tekoşîna gelê Filistîn cih girtibû. Bi vê taybetê gihîştibû sifata enternasyonalîstiyê.

Hogir Şahin di demeka nêz de, li ser pirsgirêkên tekoşînê hûr sekinî. Di dibistanên partiyê de xwe adameyê tekoşîna welat kir. Li ser hemû pirsgirêkên civak û netewa gelê Kurdistan hûr-hûr sekinî û li ser xebata şerê gel *«Di Şerê Gel da Propaxanda Çekdarî û Li Ser Xebata Ajitasyonê»* bi nivîsî pirtûk beşdar kir.

Ji bo çûna welat re Hogir Şahin bi ezm û kêfxweşî xebatê dikir. Bi vê yekê dilşa dibû. Bi heşt hevalê xwe va dema derbasbûna çemê Hêzik de ji hêla qolonyalistê Tirk ve hatin şehîdkirin.

Hogir Şahin ji bo xwe awha digot *«Herdem ez eskerbûm, disa ez dixwazim bibime esker»*

Bi xebat û pêkaninên xwe di şerê gelê Kurdistan de ew, ji zûve gihîştibû sifata şervanê gel, gihiştibû qeysa qomitan û rewşa komunîstiyê. Ew tevi sefê qomitanên gel bû. Qomitanê bê mirin ta serfiraziyê ewê bibe çekê tekoşînê û qomitanê gel ewê rêya me ronahî bike.

★

**Nav:** *Cahit Dayan*
**Navên bikar dianî:** *Garip hoca, Mazlum, Şervan, Zekeriya, Yasin.*
**Cih:** *Tunceli (Dersîm)- Nazmiye.*
**Dîrok:** *1957.*



Di çemê Hêzik de ku ji hêla hêzên qolonyalist 8 tekoşerên PKK hatin şehîdkirinê yek ji van ji Hogir Cahit Dayan bû. Cahit Dayan ji maleka kedkar bû. Dijwarîyên jiyanê hê ji xwendina destpêkî ve dibû. Bavê wî, havîna li istenbolê karkerî dikir. Li hêlê di karê avahiya de dixebitî. Ev kar têrî debara malê nedihat. Ji sedemên belengazîyê Cahit Dayan lazmatîyên dibistanê bi xebatên xwe pêk dianiya. Dema li gund dima, Hogir Cahit şivaniya gund dikir. Havîna diçû istenbolê di karên firaqşuştinê, komir û dem bi dem lîmonfiroşî û hwd. hêlan de xebatkarî pêkdianî. Bi van xebatan alîkariya debata malê dikir.

Di dema dibistana navin de dîya wî diçe rihmetê. Belengazî û êş'a dayê li ser Hogir Cahit kom dibin. Bi êş û belengazîyên giran salên piçûkî û dema xortanîyê dibuhurine. Hê ji piçûkî ve ew di nav sefên karkerên Kurdistan de cih sitendibû. Di nav belengazîyan, bê karî, birçîbûn û nav êş'ên karkerê Kurdistan de di gira dilê xwe mezin bûbû. Rewşa xwe ya vê demê Hogir Cahit awha dianî ziman *«...Nexasim min dixwest ku sazûmaneka lê sewî diminin ez li vê derê bibime berpirsiyarekî. Ji sedemê debarê ev yek neçû serî. Têgihiştina min ya şoreşgerî de tesîrên belengaziyê, birçîbûnê û tesîra sewîtiyê gellek heye. Hewqas ku tiştên min rast didît, hêza parastina van rastîyan dinav civakê de min bi xwe ra ne didît. Lewra, ez belengazbûm. Tenê temaşekarê min bû. Giştek, hêvî û fikrên min dibin sitemê da mabûn. Rêya derketina vê rewşê tunebû. Netîcên ji xem û xeyalên xwe min derdixist ew ji ne bi min an ne bi kesên mîna min çêdibû. Lê, dema ez bûm şoreşger; di tekoşîna parastina mafên belengaz û sewîyan de, mirin hebûna, disa kes nikaribû li pêşîya min bibe bend...»*

Cahit Dayan hewqas bi dilpakî û rûmetên bilind mezin bûbû. Bi keda xebatên xwe Hogir Cahit bûbû mamoste. Lê, ji sedemên nêrînê kûriya dilê xwe hê dema dibistanê de têkiliya wî bi şoreşgeran re çêbû bû, û ketibû nava tekoşînê. Mamostaniya wî tenê sê sal berdewam bû. Di 2.12.1982de dev ji mamostaniyê berda. Lewra Hogir Cahit di ew girtin û operasyonên dijwar de mecbûrê xebata binerd bûbû.

Hê ji dema (1976) dilxwazê Partîyê bû, kar û barên xwe bi dilpakî pêk dianî. Di van salan de li Çemişgezek'ê berpirsiyarîyan sitendibû. Dawîyê li Dersîmê di nav YHK de berpirsiyarîya xorta û di sala 1980 Êlûnê de berpirsiyarîya nava Dersîmê sitendibû. Sedemên xebata şoreşgerî di destpêkê da li lîsê dawîya meha Êlûnê sala 1979an hatibû girtinê. 13 roj di hepsa eskerî ya Eleziz'ê de girtî ma bû. 3 car ketibû bin girtina berçav. Ji ber ku di girtinê de, li hemberê hêzê qolonyalîst bi biryarî taybet û xebata şoreşgerî sipart û dudilî nîşan neda, neaxivî, hatibû berdadê.

Hogir Cahit; di ew dema bi piranî kes û rêxistina dev ji şoreşgerî û ditina şoreşê berdidan, xwesiparî û melisandinê dihebandin, berpirsiyarîya hoyên dijwar, parastina taybet û ditina şoreşgerî bi tewr û ezmê xwe, bi girtina berpirsiyarîya nav Dersîmê pêkanîbû.

Piştî 12 ê Êlûnê, Parti (PKK) bi piranî, li ser derxistina kadroyan sekinîbû. Ji ew kadroyên hatibûn derxistinê, yek ji wan Hogir Cahit Dayan

bû. Mîna kadroyên Partiyê di dibistanên Partiyê de Hogir Cahit zanistiya xwe di xebatên dibistanê siyasî û eskerî de pêş de biribû. Bi taybetên tekoşîna dema nuh kemilî bû. Di dema dijwariyên rewşa Rojhelata-Navîn de di tekoşîna gelê Filistîn de li hemberê emperyalizmê û li dijî siyonizmê şer kir û gihiştibû qada enternasyonalistiyê. Di rewşa dijwar de haziriya xwe ya tekoşînê tu-dem sist nexist, ji hêlek rojê 9 saet zanistiya refî, ji hêla din va xebat û zanistiya xwe ya siyasî bikar dianî. Di nav van xebatên giran de Hogir Cahit amanca vê xebatê awha rêz dikir: *«Bê parastina mafê şexsî, bê hay û baya vê yekê, di tekoşîna em li welat pêş de bixin ta di vê tekoşînê de, mirina bê pêş me, mîna kesê şoreşê, ez xwe bikar û bar tinim»* 21.1.1982 Hogir Cahit li ser vî sozê xwe sekinîye. Bi xebat û tekoşîna her hêlî, bi pêşketin û zanistiya xwe, aşkere daxuyanê ku ew kesê şoreşê bû. Di nav refa diçe welat de cih digre. Lê di gavên destpêkî de di kemîna dijmin de tê şehîdkirinê.

Hogir Cahit di hemû jiyana xwe de bû nişana welatḧiziyê, zanistiyê û nişana enternasyonalizmê. Ewê di dilên hemû kesên xwedî taybetê mirovî de bi namirinî ewê bijî. Ewê wek meşalekê li rêya mirovaniyê be.



Nav : *Fuat Ertürk.*
Navên bikar dianî : *Kusto-Ekrem, Mahmut.*
Cih : *Eleziz - Dambüyük köyü*
Dîrok : *1963.*



Fuat Ertürk, ji maleka debar navîn bû. Mala wan ji Elezîzê çûbû. Xwendevaniyê ta dibistana navî, li Elezîzê berdewam kir. Di karê tamîr û hesinkariyê de bi xebatê alikariya debara malê dikir. Têkiliya wî, bi tekoşîna serxwebûna gelê Kurdistan re salên 1976-77a çêbû. Li dibistanê di salên 1977-78an de berpirsiyariya şoreşgerî di xebata alê xwendevanan de bi kar û barê komîtê meşand. Bi têkilî û xebatên xwe hêla tekoşînê fireh kir. Ji sedemên girtinê Elezîzê keysa xebata wî li vê hêlê nemabû. Û çû Hozat'ê. Di karê hesinkariyê de xebatkariya xwe domand. Alikariyê bi tekoşînê re kir. Ji bê imkaniyan têkiliyên wî rast-birast pêknedihatin. Lê dema xebatên Eleziz'ê dihate tekûzkirin bi berpirsiyarê eskerî li vê hêlê dest bi xebat û tekoşîna şoreşgerî kir. Bi pîlan nêzî 10 tevgeran pêkanî. Di xebat û tekoşîna hêlê de rolên pêwîst leyîstibû. Li hêla Hozat û Çemişgezek'ê dîsa berpirsiyariyên wî çêbûbûn. Berpirsiyarî û tevgerên pê kar û bar bûbû, bi serfirazî van yekan pêkanîbû. Şoreşgerekî çeleq, biryarvan û zane, eskerekî baş bû.

Ji sedema xebat û tekoşîna şoreşgerî herikîbû hêla gundîtî di salên 1980î de li vê hêlê wezîfên propaxanda û tevgersaziyê sitendibû. Kar û barên xebatê û berpirsiyariyên van hêla ta salên 1981î domandibû. Di vê salê de ewilî alîkarê eskerî dawiyê berpirsiyariya eskerî li vê hêlê sitendibû. Ta partî wî xweste dervahî welat, bi bîr û baweri, bi biryarî û ezmê şoreşgerî xebat û tekoşînê li hêla Dersîmê pêk dianî.

Hogir Fuat ne tenê tekoşerê kêrhat berpirsiyariyên xwe, ew ji bo parastina taybetên Partiyê, mirin dida ber çavên xwe.

Di pêşketina xwe da, parastin û pêşxistina Partiyê daxuyan dikir. Di bin rewşên dijwar de, li kampên Filistîn zanistiyên xwe pêş de biribû, bi zanistiyê xemlgirtibû.

Di qetliama Hêzik'ê de şehît bû. Bi nişanên canfêdaî û bîr û baweriyê ewê şewq li rêya me bigre.



Nav: *Weysî Şimşek.*
Navê bikar dianî : *Battal.*
Cih : *Eleziz - Bîrvan.*
Dîrok : *1962.*



Têkiliya Hogir Weysî bi tekoşîna serxwebûna gelê Kurdistan re digihîje sala 1979a. Di vê demê de Hogir Weysî li lîsê dixwend. Dema tekoşîna serxwebûnê di nav xort xwendevanan de fireh bû û kemilî, di nav xebata xort û xwendevanan de Weysî berpirsiyariyên pêwîst sitendibû. Mala wan li Bîrvanê dima. Ew di nava heval û hogiran de xebata zanistiyê bikar dianî.

Li dibistanê di nava xebat û tekoşîna xort û xwendevanan de, bi xebat û tewrên xwe yê xuyanî xwe da nîşandan. Ji alikî li kazayê xebata şoreşgerî, li alê din ji bo alikariya debara malê xebatkarî didomand. Di hêlê de berpirsiyariyên kazayê û çend gundan sitendibû. Bi vê xebata rûmetî sefê tekoşînê fireh kiribû.

Piştî 12 ê Êlûnê ku gellek kes dev ji şoreşgeriyê berdan, gellek rêxistin pelişîn, û herçewa li pêş xayintî û melisandinê bi çavên xwe dibû, di ew hoyên dijwar de, bi biryarî xebatên şoreşgerî berdewam kiribû, doza gelê Kurdistan û rûmetên Partiyê mîna çavên xwe parastibû. Hogir Weysî bi xebat û jiyana xwe ev yek zelalkiribû. Tenê mana jiyanê ku hoyên dijwar de be ji dîsa liberxwedane. Hogir Weysî ta ji hêla Partiyê ve hatibû xwestinê wî bi ezm û dilgeşî xebat û tekoşîna li welat domandibû.

Dema destpêka hatinê de, Hogir Weysî nêrînên xwe awha dianî ziman; *«Pê bawerim ku ezê tekoşîna serxwebûn û azadiyê ta dawiyê karibim bimeşînim. Derheqê xwe de ev yek pêş-*

*niyar dikim; li vê derê baş zane bibim û di demek nêz de ez biçim welat».* Bi vê ezmê bawerîyê xwe di demekê nêz de ji her alî ve kemilandibû.

Ji hêlekî di nav tekoşîna gelê Filistîn de zanistîya xwe bi hêz kiribû, ji alê din ve li hemberê emperyalîzmê şerê enternasyonalîstî pêkanî bû.

Dema xwe bi kar û barên tekoşînê dikemiland, dîtina xwe ya vê demê awha rêz dikir: *«Ez xwe karê tekoşîna dema pêş me dikim. Bi vê, ez xwe didîn berçavê xwe, li çûyîn û hatina xwe mêzedikin, kêmasînê xwe didim berçav. Ji bo dîsa leqayî van kêmasîya nebim ez xebatê dikim. Ji bo ez bi şexsîyeta şoreşgerî bikemilim, xebateka bêsekinî min daye ber xwe. Ji bo zanistîyên di xebat û tekoşîna welat de bikar binim, xêza Partîyê bi cih bikim hwd. ez xwe di her hêlên xebatê de digihênim. Lewra di nav* pêşketina Partîyê û rewşa min de gellek rê heye. Ji bo ku ez bigihijim vê pêşketinê xebateka dijwarî dimeşînim tenê bi vî awahî mirov layiqê biranîna şehîdan tê. Tenê bi vî awahî Partî û rêber têne parastinê. Tenê bi vê rewşê ew barên ku dîrokê danîye ser pişta me tê rakirinê. Wezîfa rûmetî tenê bi vî awahî tên meşandin.

Têgihîştina hogir Weysî rêya hatinê hewqasî zelal dikir.

Ji bo Tekoşîna Rizgarîya Netewa Kurdistan'ê bi tevgersazîyê xemlbigre, qet mirin di hay û baya Hogir Weysî de derbasnedibû. Di çemê Hêzik'ê de bi 8 tekoşerên PKK di keminê de hate şehîdkirinê.

Hogir Weysî Şimşek, ji her şervanê netewa re bûye temsîla pêşveçûnê û şervanekî bi nîşanê.

★

**Nav :** *Weysî Hantaş.*
**Navên bikar dianî :** *Shadî Maxbût Nablûs.*
**Cîh :** *Diyarbekir - Lice.*
**Dîrok :** *1963.*



Bavê wî kirin û firotina zad bikar dianî. Hê ji zarûtî ve Hogir Weysî ji bo alîkarîya debara malê dest bi xebatkarî kiribû. Li ser malê tesîrên dîtina olî hebû. Hê ji destpêkê ve Weysî dibin vê tesîrê de mabû.

Lê, dema Tekoşîna Serxwebûna Kurdistan giranîya xwe nîşan dabû, bere-bere ji bin vê tesîrê xwe derxistibû; têkilîya wî bi tekoşîna şoreşgerî ve çêbû bû. Berî vê yekê ji ber li kazayê "Rêya Azadî" hebû pêşî têkilîya Weysî bi wan re çêdibe. Lê di demekî nêz de ji wan vediqete. Hogir Weysî vê demê û veqetandina xwe awha tîne ziman: *«tewrên "Rêya Alzadî" tewrên xwesiparîyê û tewrên melisandinê bûn. Ji bo serxwebûnê tekoşîn ne dikir. Min weşînên Partîyê xwend. Piştre min polîtîka Partîyê heband. Bi vî rengî dilxwazîya min ji Partîyê re çêbû».*

Piştî têkilîya Partîyê Hogir Weysî di xebat û tekoşînê de hemû hêz û ezma xwe di xebatê da derxiste derva.

Di nav zilm û zorbazîyên 12 ê Êlûnê de, di navbera têkilîyên nav Hênê û Diyarbekir de mîna pirekî rolên mezin leyîstibû. Li hemberê dijwarî û zilmên cuntayê bi belakirina belavokên Partîyê bikar û bar bûbû. Vê xebata xwe bi serfirazî domandibû, bi pêkanîna berpirsîyarîyên xwe ji bona hoyên dijwar Hogir Weysî nîşaneka xuyanî ye.

Piştî dema 12 ê Êlûnê ku Partîyê hin kadroyan derdixiste derva, yek ji van kadroyan Hogir Weysî bû. Di tekoşîna karbûnê de Hogir Weysî bi hemû ezm û bawerîyê xwe bikar dianî. Li kampên Filistînîya bê xem û tirs di gellek têlûkên mezin de derbas bûbû. Di sefê tekoşrên ku xwîn dane tekoşîna gelê Filistîn de cih girtibû.

Ji bo pêşxistina têgihîştinên xwe bigihîne qeysa pêşketina Partîyê nerînên xwe awha daxuyan dikir: *«...tekoşînên gelan, ji tekoşîna gelê me ra pêwîstin. Mîna xezînekî ne. Kanîyên zanistîyê ne. Di van tekoşînên gelan de serfirazî, kêmasî û binketin hene. Ev ji bo tekoşîna gelê me danezanên mezinin. Ku bêne bişkaftinê ev tekoşîn bi pêmayîn û danezana gellek dewlemendin. Ji bo ku di şert û surûtên welat de em van yekan bikar binin dibî ku ev bêne zanînê.*

*Karbûna rêya şoreşgerî, ji her hêlî ve pêşxistina zanistîyê û pêşxistina tekoşînê ye. Tenê ku ev kêmasî bêne rakirinê, mirov layiqê Partîyê dibe. Bi vê zanistîyê di kar û barên xwe yê xebatê de ezê pêşxistina zanistîyên xwe bi kemilînim. Qeysa ku Partî daxuyan dike ezê xwe derxînim wê derecê».*

Weysî Hantaş bi hêz û bawerîya Partîyê xwe di demeka nêz de bi kar û barên tekoşînê kemilandibû. Di destpêka çûna welat de di nav sefên refa yekemîn de cih girtibû. Gihîştibû serfirazîyên vê yekê. Bi ezm û bawerîya ku zanistîyên xwe li welat pêk bîne dilxweş dibû.

Li çemê Hêzik'ê di keminê de ji hêla dijmin hate şehîdkirinê. Ew di nava sefên tekoşerên namirin ê gel da cih girtiye.

★

**Nav :** *Hasan Özçelik.*
**Navên bikar dianî:** *Îsam, Hesen, Erdal.*
**Cîh :** *Tunceli(Dersim) - Nazmiye.*
**Dîrok :** *1956.*



Di nav sefê tekoşina gelê Kurdistan de dema li Dersimê xwendevanîyê di domand, di sala 1978a de cih girtibû. Her çiqas xwediyê gellek imkanan bû, dîsa bi biçûkîya xwe bi dilgeşî û fedekarî xebat û tekoşîna şoreşê pêk diani.

Hogir Hasan ji maleka dewlemend bû. Rûreşiya jiyana malê şexsî nedabû berçava. Li ser dijwariyên rewşa gel bawerî anî bû. Hemû dijwariyên bi bîr û baweriya gel, bi ezmê ku gel nîşan dida li pêşxwe radikir.

Di destpêkê de hawirdor û maliyên wî li hemberê wî radiwestin. Di vê pêvajokê de bi her awahî alikariya tekoşînê ne dikemiland. Lê, di pêşketinê de vê yekê bi ketina nav tekoşînê, bi hebûna xwe gihande qeyseka bilind. Bi şervanê netewî xwe semiland.

Hogir Hasan di nav xebata xort û xwendevanan de berpirsiyarî sitendibû. Ji sedemên geşî û xebatên xwe, ji hêlên sosyal-şoven û rêxistina ajan "siterka sor" ra, bûbû amanç. Sê caran li pêşiya wî kemîn vegirtibûn. Ji hemû kemîna bi ezm û çeleqiya xwe derketibû. Xebata wî ya dibistanê ji polis re hatibû gilîkirin. Ji vê yekê wî girtibûn. Di vê girtinê de ji dîsa bîr û baweri û parastina taybetên şoreşgeriyê sistî nîşan nedabû, hatibû berdanê.

Di nav xebatên bajêr de ji hêla Partiyê berpirsiyariyên xort û xwendevanan, propaxanda nivîsî û berpirsiyariya belakirina belavoka sitendibû. Bi serfirazî hemû berpirsiyariyên xwe pêk anibû. Ne tenê ji berpirsiyariyên xwe ra ew bi zanistî, bi biryarî ji hemû berpirsiyariyên ku Partiyê daxuyanî wî dikir, bi tewrên xwe yê hemberê kêmasiyan, bi serxistina tewrên rast serfiraziyan nîşan dabû.

Hogir Hasan di sala 1980yî de bi biryarê Partiyê derketibû hêla gunditiyê. Ta ji hêla Partiyê bê xwestin li vê hêlê xebatên şoreşgerî di domand. Li hemberê hemû dijwariyan bi biryarî rawestibû. Ji hogirên xwe ra bûbû kaniya dilgeşiyê.

Di dibistanên Partiyê yên siyasî û eskerî de zanistiyên xwe pêş de biribû. Di nav hogiran de bûbû nîşana pêşketinê.

Di dema dijwar de li sefên gelê Filistîn li dijî emperyalizmê û siyonîzmê de tekoşîna şoreşgerî pêk anîbû.

Di çûna welat de, li çemê Hêzik'ê di kemîna xayin de hat şehîdkirin. Ta dawiyê li hemberê dijmin rawestiyabû. Di nav şehîdên rizgariya netewa de cih girtiye.

★

**Nav :** *Musa Îlk.*
**Navê bikar dianî :** *Gazi.*
**Cîh :** *Tunceli(Dersim) - Hozat - Çixirli.*
**Dîrok :** *1955.*



Hogir Musa bi kûriya welathiziya dilê xwe têgihiştina şoreşgeriya xwe awha dianî der: *«ji bo gihiştina şoreşgerî, gelek bûyer tesir li min kiribûn. Hê ji demên zarûkî ve, kal û pîra min, qetliama Dersimê ji me re digotin. Hovitiyên ceşê Tirk, hovberiya dewleta Tirk bi gotinên ne diqedandin. Ji gotinan mûyên me gij dibûn. Li hêla dinê belengazî, tunebûn, bêdadî hwd. yên ku qetliama Dersimê ditibûn ji me ra awha digotin ku berê, li van der û dora ceşê Tirk, ala Tirka tune bû. Piştî ku em binketin, ew hatin ketin vê derê. Hê ji zarûtî ve bi van gotinan pirs li hişê min çêdibûn. Bi rojan ez li serê disekinim. Ku apên min di van qetliaman de hatibûn kuştinê. Bi gule û zerpên gundê me ji hev tarû mar kiribûn, hilweşandibûn. Ez ji zarûkî ve bi gir û hêrsa li dijî ceşa Tirk û hemberê dewleta Tirkiyê mezin bûbûm. Bi vî awahî pêplûka têgihiştina şoreşgeriyê çêbûbû».*

Hogir Musa ji maleka belengaz bû. Ji tengasînên jiyanê tenê heta lîsê xwendibû. Bi malitî di erd'ê cotkarî dikirin. Ji sedemên welathiziya malê û ji rewşa jiyana dijwariyê herdem li rêya felatiyê digeriyan. Bi alikariya welathizeki Kurdistan di sala 1977an de li sefê tekoşîna rizgariya netewî cîh girtibû. Di nava bê imkaniyên giran de herdem ji bo pêşxistina têkilî û xwendina xwe xebatê dikir. Sala 1978an de bi profesyonelî di nava xebat û tekoşînê de sef girtibû. Bi hemû ezm û hunermendiya xwe amadeyê tekoşînê kiribû. Li Hozat'ê di nav xort û xwendevanan de xebata şoreşgerî pêk diani, ji alî din ve ji bo debarê xebatkarî dikir. Pirtûk, lazmatiyên jiyanê bi vî awahî kar dianî. Bi kar û barê tekoşînê vê dema ku çû Elezizê di van salan de hatibû girtinê. 15 roj girtî mabû. Ji ber ku derheqê wî de tişt ne dihatin zanin û ji sedemên tewrê biryarî wî berdabûn. Piştî berdanê hê zêdetir, bi ezm û dilgeşî xebatên şoreşgerî domandibû.

Li Hozat'ê berpirsiyariya sekreterî, berpirsiyariya eskerî sitendibû. Berpirsiyariyên wî li Dersimê û Elezizê çêbûbûn.

Dema ji hêla Partiyê ve hate xwestinê ku were Filistîn, li hêla Diyarbekir hate girtinê. 40 roj dibin eziyet û lêdanên giran de mabû. 20 roj li polisê siyasî, li "Qereqola Kurtoxlu" 10 roj, û li "Deve Geçidi" 10 rojan di işkencê de mabû. Hemû dijwariyên işkencê wî sist nexistin. Bîr û baweriya wî ne şikandin. Ji hêla berpirsîyarên (PKK) ve berpirsiyariya jiyana hepsê û berpirsiyariya zanekirinê sitendibû. Hogir Musa 11 hiv girtî mabû. Berî 12 ê Êlûnê bi çar rojan hatibû berdanê. Hogir Musa ji ber işkencên giran xwîn diavêt. Piştî berdanê hêzên qolonyalîst dîsa li Hogir Musa digeriyan. Derheqê wî de biryarê girtinê derxistin. Radestbûna wî dixwestin. Her dem li ser maliyên wî zorbazî dikirin. Îşkencê giran li maliyên wî pêk dianîn. Bira û bavê wî dibirin işkencê. Hogir Musa bi pêşxistina zanistiya xwe bersîvên van zilm û zerpên qolonyalista dabû.

Neqla duyemin ku hate gazîkirin wê demê li Dersimê berpirsiyariya eskerî didomand.

Musa Îlk; li hember dijmin û li derva mina ronahiya çavên xwe rûmet û taybetên Partiyê di parêst. Ji bo pêşxistin û parastina Partiyê Hogir Musa van yekan daxuyan dikir; *«...dibê ku mina her hêlê xebat û tekoşîna nav, bi giranî pêk were. Partî; xwe ji kesên dudilî, xwesiparî û xwe ji revoka bi sitirîne. Di nav xwe da avahîyeka bi hêz bikemilîne. Lewra; ser-*

*firazi û pêşketin bi van yekane. Ji bo şerê gerilla xwe bikar û bar bîne û şerê gerilla bide pêş xwe. Tenê girtin û tunebûn bi van yekan kêm dibin...»*

Hogir Musa berî hemû yekan ji bo pêşketin û di nav tekoşîna rizgariya netewa de cih bigre xebateka bê emsal pêk dianî. Hemû taybetên şoreşgerî, rûmetên tekoşerê Partiyê li xwe girtibû.

Li Filistînê gihiştibû nîşana enternasyonalistiyê. Di dema çûna welat de li çemê Hêzik'ê bi 8 hevalên xwe ra hate şehîd kirinê. Di kemînê de ji lingên xwe birîndar dibe. Bi alikariya hevalê xwe him li hemberê dijwariya avê him li hemberê dijmin şer dike.

Hogir Musa, mîna ronahiya çavan Partî û rûmetên Partiyê di parast. Vê yekê pêşniyar dikir. Parastin û pêşxistina Partiyê bi canfêdayên giran pêk dianî. Ewê ev yek ji hemû şervanên serxwebûna Kurdistan re bibe nîşan.

★

**Nav :** *M. Beşir Aksoy.*
**Navên bikar dianî :** *Şerîf.*
**Cîh :** *Midyad - Halah.*
**Dîrok :** *1956.*



Hogir Beşir zewicî bû. Berî ku, tevî nava tekoşîna şoreşgerî bibe, li metrepolê kaynakçitî, ji 1979an de li Midyadê di karê profîlê de kar dikir.

Li vê hêla sînorê dijwariyên qolonyalistiyê û pêjrandinên qolonyalistiyê tesîr li Hogir Beşir kiribûn. Lê, xwediyê welathiziyeka kûr bû. Di nav hoyên dijwar de her dem li rêya xelasiyê digeriya. Di vê pêvajokê de ji sedemên ku di salê 1973an de li hêlê KDP hebû têkiliya xwe bi wan re çêkiribû. Ta salên 1976 ev yek berdewam dibe. Hogir Beşir ji hemû aliyan xwestinên dilê xwe bi wan re nedîbû. Ji van sala pê de di bin tesîra tekoşîna şoreşgerî de mabû. Di sala 1978an têkiliyên xwe bi tekoşîna şoreşgerî va girêdabû. Di sala 1979an de ev têkilî bi her awahî kemilibûn. Ji bo pêşketina tekoşîna şoreşgerî bi maddî û manevî hemû îmkanên xwe vekiribû. Di nav xebat û tekoşîna şoreşgerî de sef digirta. Kêmaniyên xwe di demekî kurt de ji ser xwe avêtibû û ji hemû aliyan de xwe pêşve biribû. Di xebat û tekoşînên vê hêlê de piştî cuntayê xebata şoreşgerî bê sistî domandibû. Sefê tekoşînê bi xebat û tekoşîna xwe fireh kiribû.

Berpirsiyariya nava Midyadê û di hêla gundîtî de berpirsiyariya rêxistin û propaxandê sitendibû.

Piştî derba 12 ê Êlûnê ji bo derxistina kadroyên Partiyê bikar û bar bûbû. Ji hêla cuntayê va dihate gerandinê. Ji sedemê vê yekê dev ji xebata hêla bajer berda û derketibû nav xebata binerdî.

Hêzên qolonyalîst bi hêrsa destnekirina Hogir Beşir hemû hêrs û girra xwe li ser maliyên wî sekinîn. Îşkencên giran li nas û maliyên wî kiribûn. Ji ber welathizî û pêkanîna berpirsiyariya şoreşgerî maliyên Hogir Beşir ezm û baweriyên xwe dibin îşkencên giran de parastine. Li hemberê zerp û zorbaziyên dijwar li berxwedane.

Hogir Beşir di hemû hêlên xwe yê xebatê de tesîrên giran li ser ehlên hêlê pêk dianî. Wan tevî sefên tekoşînê dikir.

Ji hêla Partiyê ve hate gazikirin û di dibistanên Partiyê yên siyasî û eskerî de cih girt. Xebat û rewşa xwe dema ku di bişkaft Hogir Beşir awha digot: «...*Hê zêdetir di pratikê de ez kemilîme. Ji sedemê vê yekê baweriya mine ku zanistiya mina siyasî kême. Bê teorî, pratîk ji her ku kêr nayê, dibî ku di hêla teoriyê de ez xwe pêş de bixim. Her çiqas di hêla pratîkî de pêşhatineka min hebe ji, ez xwe bi her awahî kadroyekî Marksîst û Lenînîst nabinim. Lê, bi dozê ra baweriya min bê seriye. Hêza pêkanîna serfiraziyê ez bi xwe ra dibinim. Di hêla eskerî de têra xwe zanistiya min heye*».

Di çemê Hêzik'ê de bi 8 tekoşerên PKK ra ji hêla qolonyalîstan de hate şehîdkirinê.

Jiyana Hogir Beşir bûye nîşana vê yekê ku; dibin hemû dijwarî û pejnandinê qolonyalîstî de, çiqas dûrketibe ji, hemdemê ger ku gelê Kurdistan bigihîje rêberiyê, rê bê nîşandan, ew xwedî rêzanê xwe ye, rêberê xwe herdem diparêze, ta di rêya wê de canê xwe dide. Ku, Hogir Beşir bi dilxwaziya welathizî di nav tekoşînê de bi rêberiya PKK bûye şervanê tekoşîna rizgariya netewa. Bi rûmet û taybetên vî şerî li sefê gelê Filistîn bi biryarî liberxwe da ku gihiştina biratiya gelê dinê bi xemla xwe daye nîşandan.

★★★

# Hêza qolonyalîst di bin navê tetbîqatê de hovîtî pêk tîne

Di meha sebatê de hêzên qolonyalist li mintîqa Agrî tatbîqat çêkirin. Û di vê tevgera çavtirsandinê da karbidestê cunta yê amade bûn.

Bê şik çêkirina tetbîqatê nexasim di vê demê da, gellek pêwistiyê wê hene. Ne bê amance. Tê zanîn ku di ev dema nêz de bijartina "referandum" a cunta çêbû. Di bin singo, zerp û sitemên dijwar de, her çiqas bijartinê pêkanibin jî, daxwazê cunta faşista qolonyalist li hêlên Kurdistan ne çûn serî. Ev neticê bijartine, ji bo melisandin û tunekirina berxwedan a Tekoşîn a Netew a Kurdistan bê mecaliyên hêza qolonyalist derxist meydanê. Ev netîce: gotin û pêkaninê qolonyalista derxiste valahiyê. Ji ev hêlên xuyanî yek jî mintîqa Agrî bû.



*Nêrînî ji tetbiqatên bê dom li Kurdistan pêk tên.*

Ku qolonyalistê Tirk ne ji aneha û dema bijartina "referandûm"ê va, ji demên berê va li ser vê hêlê bi baldarî disekine. Lewra; taybetên vê hêlê bi piranine. Ev hêl, herdem jibo qolonyalîsta wekî kelemekî maye. Bi hêz li ser vê hêllê sekinîne. Ji ber ev der beşekî stratejîke. Li sînorê Îranê û yekîtî ya Sovyetî ye. Ji alî din va: ev beş ji berê va bûye hêlla berxwedanê. Tewrên berxwedanî li vê hêllê dewlemende û bi bingehe. Ji xeynî van taybetiya, di dema bihurî de tekoşîna berxwedana netewa Kurdistanê li vê hêllê, bi hêz kemilî bu. Pêkanîn û serkeftinê qolonyalistê Tirk bi piranî betal mabûn. Lewra, ji ber taybetiyê hêllê, qolonyalistê Tirk bi zanistî li ser vî beşî politikeka hûr û kûr meşandibûn. Ku tewrê berxwedanî di nav girsê hêllê de pûç bixînin, hebandina berxwedanê ji hiş û mejî yê girse yê hêllê ziwa bikin, xayintî û xwenenasî û bê teşetiyê li vê beşî bê serî kiribûn.

Bi kêmasî di vî rexî de serkaftinê qolonyalîsta pêkhatibe ji, ev yek bi tekoşîna berxwedana netewî bê fesal ma. Lê, di pêkanînên xwe da, tewrê berxwedanî, li vê hêllê ne şikandin. Ev tewr bi tevgera Tekoşîn a Rizgarî ya Kurdistan va hê zêdetir bû. Bingehê wê hê zêdetir bi firehî hêz avakirî bû.

Girseyê gel li hawirdorê tekoşînê sef girtibûn. Li dijî pêkanînê qolonyalist pêkanînê bê teşekirinê û xayintîyê, û li hemberê sazûmanê qolonyalist bi rêberî ya şoreşgeran tekoşîn bilind kiribûn. Pêkanînê demê dirêj yê qolonyalîstê Tirk pûç derxistibûn.

Her çiqas bi 12 ê Êlûnê va zerp û zorbazî yê bê hed li vê hêllê hati be meşandin li ser hev û dû operasyonê êrişkar pêkhatibin û girtinê girseyî çêbûbin, dîsa hêza berxwedan a vê hêllê bi giranî ne hatibû melisandinê. Di van hoyên dijwar de tewrên berxwedanî sist neman. Bi tekoşîn û berxwedanê girtiyên hepsê, ev tewr hê zêdetir jidîya bû. Bi operasyon û girtina, amanca qolonyalistê Tirk ne çû serî. Ne gihîştiye amanca xwe.

Amancê tetbiqatê yek ji eve ku; qolonyalîsta Tirk, xwe ji Tekoşîn a Rizgari ya Netewa re, xwe ji şereki dirêj re amade dike. Hê zêdetir van pêkanînê xwe li ser van hêllên stratejîk, pêktîne. Ku van hêllan nebin cîhgera şoreşgera, piştgirtî ya tekoşîn a rizgarî ya netewî li van hêlla nekemile, alîkarî ya şoreşgera pêk nê, û girseyê hêllê di rexên tekoşînê de cih negre, ji bo melisandin û pûçkirina girseyê hêllê bi rolê tetbiqata zerp û zorbazîyê xwe bê serî dike. Ji bo vê yekê ji van hêlla dike cîhger û sekna leşkerî. Hêzê xwe yên êrişbaz ji van deran kêm nake. Navê vê armanc û hovberiyê, tetbiqata Noyan-83, an tiştekî din; ew daxwaz û hêvî ya rizgarî ya netewî ji jîna gelê Kurdistan na qetîne. Ev nayê qetandin. Lewra serekê cunta di gotebêja xwe ya hêllê de "**em jibîr nekin ku dem awha na bihure. Yê li hemberê me, dema keysê da li ser bingehê xebat û zanistîyên xwe yê vê hêllê û bi tevgerê nû hember me ewê derbikevin". "Herdem ji hevalên xwe ra dibêjim; wun zen nekin ku hertişt qedîya ye. Ji neha pê de tiştek çênabe...**" Bi gef û tabandinê giran vê yekê dide zelal kirinê.

# ZİMAN Û ÇAND

Bi rastî rewşa pirsgirêkê dişihube vê. Çewa li libên tizbîyê di quncên tarî de ben biqete, lib; ji hev bela-wela bibin û her libên tizbîyê ji tarîtî nêne dîtin, nên civandin û bi ben nên xemlandinê, li serê-rêz nabin. Pîtin û civandin, rêzkirin û xemlandin a wan bironahiyê keys dibîne, digêhijin sipartek û dar a xemlgirtina xwe, û bi kartên gotinên kifşî bi pergal û rewşa xwe, rewşa ziman û çand a gel ê Kurdistan der dike meydanê. Ev rewş a dijwar, bişkavtina pirsgirêkê û zelal kirina tewr û pergalên xebatê pêwist dike.

Bi çi awahî û bi çi li ser ziman û çand bê seknandin? Nêrîn a ziman û çand bi çi awahî be? Nêrîna rast û bingehî kîjan e? Bişkavtin û xebata çand a netew; ji rewş a netew û welat, ji tarîx û rewşa civakê tên qetandin? Amanc; zanebûn e; an, pêşxistin û bersivanîn e! Çand e? Ji ber ku ziman û çand taybetên netewî ne, xebat a bişkaftin a ziman û çand a netewî dibi ku, bi rewş a netew, bi hoyên welat, û bi pirsgirêkên netewî û civakê re bên dest. Bersîvanîna van pirsa, rê ji xebat a ziman û çand re vedike.

Mîna tê zanîn, pêvajokên tarîxa civaka Kurdistan dibin serdestên biyanî û rewşa bindestiyê de hatiye ta demên tên jiyane piranê, pêvajokê, bindestî û hoyên dijwarî diye. Herçiqas di pêvajokê civaka feodalî de, çand a gelê Kurd dewlemend û bi hêz kemilî be jî, bi destpêkirina serdest ketina xwe va, pêşketin û gihana civakî û çand a civaka Kurdistan hatine rawestandin. Bi qolonyalîstî ya kapîtalist re ev dijwartir bûye. Di vê demê de ji ber qelskirina aborî, leşkerî û civakî hwd. avakirin a serdestîyên çand a biyanî bi hêsanî pêkhatî ye. Lewra, sipartekên çandê bê hêz mane. Di dema feodalî de jî ji ber ku çand a dewlemend û gewre ne gihîşte sipara aborî, siyasî û sazûmanên, bê pêşketin ma bû. Dîsa ger mîsal bê nîşandan, rewşa çanda gel ê Kurdistan; di şuhube jîyan a nêrgiza çîya. Çewa li çîya yê zevftgirtî nêrgiza di nav lat ên dijwar de dibin ba û tav a havînê de, bê av bimîne. Bûtik bigre lê, ji ber rewşa dijwarî yên jîyan a xwe; bê bişkaftin û vekirin a bûtikên xwe bigermiçe şînbûn a wê bi sekine. Çanda gelê Kurdistan jî, kemilandin û pêşveçûna xwe ya serbixwe ra keys ne dîtî ye. Ji ber rewşên xwe yên dijwar rawestandî ma ye.

Ji ber qelsî ya pêşveçûn û gihêna civakî, civaka Kurdistan di alê çand û siyasî de pirr li paş ma ye. Ziman û çand a Kurd serdest ne ketî ye. Xizmet ji mafên netewî ra ne kirî ye. Nexasim dema me de, ev rastî, li ber çav'in. Ku, îro çand û zangêr a serdest xizmetê ji mafê netewa Tirk re dike. Ev zangêr a zanistî û çand a qolonyalîst e. Îmkanên wê bi piranî ne. Ev polîtîka qolonyalîst xwedî yê aletên sazûmanîyê, keszane û xwedî yê hebûnê ye. Amancên vê polîtîka qolonyalîst bi vî awahî rêz dibe; qolonyalîst ê Tirk dixwazin di pêkanînan de hebûn a netew a Kurdistan tune bikin, kes û girseyên civakê bi saya pêkanîn a polîtîkayê bînin qeysa ku kes û girsayên gel, ne tenê xerîbê xwe bibin, kes û girsayên civaka gel xerîbê keda xwe û xerîbên gel û welatên xwe biminin.

Bingehê pêşveanîna vê polîtîkê şovenî ya burjuvazî yên Tirk e. Ev polîtîk a li ser vî bingehî û bi amancê wî tê meşandin. Di domandin a vê polîtîk a bingehî de, ev yek gellek pêwist e. Nexasim amancên vê polîtîka bingehî xuyantir dike ku, burjuvazî yê Tirk sazkirin a qolonyalîstî ya aborî û siyasî dixwaze bi gihêne qeysa qolonyalîstî ya tewr û teşe, hiş û têgihîştinî. Anî, sazî yên qolonyalîstî ya hêllên din, dixwaze bi qolonyalîstî ya rexên hişî biqedîne. Ev yek ji bo naskirin a amancên burjuvazî yên Tirk û têgihîştina reşa gelê Kurdistan kifşkirineka bingehîye û pêwîste.

Ji ber netîca polîtîqa ye ku, bi hêz a xwe ya ava, qolonyalîstê Tirk li ser hêllên zane û têgihîştî, tesîreka kûr û fireh bi serdestî sazkirî ye. Ger ku, rewş a welatên qolonî bên berçav, pêwîstî yên van pêkanîna ewê derbikeve meydanê. **Lewra, di destpêkê de li gel**lekê welatên qolonî, tekoşîn a rizgarî ya netewî bi destên ronakbiran pêk hatîye. Her fîrqê rewşa welatan hebe jî, ronakbirên van welatan di tekoşînê de rolên pêwîst leyîstine. Li welatê me, piranî ya ronakbira hebe jî, tewrên wa yên destpêkirin a tekoşîn a rizgarî ya netewî de ne tewrên bê pezindarî. Tewrên wan, tewrekî ne erînî bû ye. Bi sedhezaran ronakbir ên Kurdistan hene ma gelo çima rolê xwe di destpêk a Tekoşîn a Rizgarî ya Netew a Kurdistan de bi erînî ne leyîstine? Çima giranî ya xwe bikar ne anîn? Çima ne tevgersazbûn? Ev refên zane, hay-xeber, agahdarê Dînê û baldarê hawirdorên xwe, di nav civak a Kurdistan de bi tewr û fikrên xwe bê pergal mane? Çima ji bo bişkaftina pirsgirêkên netewî û civak a Kurdistan, hêza zanistî ya xwe, ne xebitandin.

Bê şik, sebebên van yekan, teşe girtin ê çin û tebeqên civak a Kurdistan û bi giranî ji pêkhatina qolonyalîst ya hiş û mêjî ye. Ger bi awakî di bên gotin: qolonyalîzm, di hiş û mêjiyan de hêl'in vegirtî ye.

Ger di rexên objektîfî de pêşhatina sazûman a qolonyalîstî ya aborî, civakî û siyasî di rexên subjektîfî de jî hişên fikirkar û mêjî yên zinde ray dî be û xwe dide hebandin ji vê sazûmanê dijwartir û serdesttir tu sazûman tunene. Rakirin û binxistin a vê sazûmanê ewê gellek dijwar be. Di zeftgirêdan a vê rewşê de, pirsgirêkên gel, pirsgirêkên civakî û netewî ne bi hêsanî bi dijwarî yên rewşê û bi tevahî ya pirsgirêkan ve dibî ku bi dest bên girtin. Lewra, burjuvazî yê Tirk di pêkanînên Kurdistan de li dû vê rêyê ye û vê ji xwe ra rê girtî ye. Ji bo zelalkirina pirsgirêkê, nê ji birkirin ku, kapitalizm a di Kurdistanê de ya biyanî ye. Ya qolonyalîstê Tirk e. Amanca burjuvazîyên Tirk û emperyalizmê bikarîne. Ji karanîna Kurdistan'ê de hêzkirin û sazbûn a netewî tune ye. Lê, bi ziman dibe ku; "kapitalizm: sazkar û kêrhatê netewî ye" bellê rast e. Lê, di bin serdestî ya kapitalîzmê de tunebûn û helandin a gelan jî, pêkhatî ye. Aqibetên Aztek'a, Înka'ya û gelên çermsor, bi qirkirinan ji tunekirina Ermenî yên Anadol'ê, rastî yên pêvajokên tarîxê ne... an gel'a di nav netewên serdest de, taybetên xwe wunda kirine û heliyane. An jî di zilmên dijwar de hatine tune kirinê. Ji pêvajoka tarîxê heta dema me, rêya hebûna gel'a parastina taybetên netewî bûne berxwedan û tekoşînên dijwar. Gel'a hebûn a xwe bi berxwedan û tekoşîn a

berdewam kirine. Parastin a taybetên netewî di tekoşinê hemberên biyani û sitemkariyê de derbasbûye. Ev ji gelên ezmkarên hebûnê re bûne rêç. Di vê rêç'ê de gelên Vietnam, Korê û Mozambik hwd. ji gel'an're bûne nîşan. Hebûna xwe di tekoşînên hemberê biyanî û dijî kapîtalistî ya emperyalîsti bi cih anîne.



*Sinor û heyama hobûn û têgihiştine nine.*

Di pêşvehatina kapîtalîzma qolonyalîstî de, ji bo gihanî ya netewî ji derbûna hoyên objektîfî ra, nayê gotin ku "kapitalizm kêrhatê netewî ye". "Netewbûni pêktine". Derketina çinên nû-dem, vebûna rê ya, firebûna bazarê, tiştên objektîfî ne. Li ser vî bingehî netewgihanî jî, tunekirina netewa ji bikar tê. Hêza biyanî bi saya, hêza qolonyalîst û bi pêkanînên xwe yê dijwar tunekirina netewî dikare pêkbine. Di tekoşîna rizgari ya netewî de, hêzên welathiz bi tevger û tekoşîna rewşgirêdahî ger felatina erd, aborî û ziman û çand pêkbînin, li pêş taybetên netewî bend na mînin û netewsazî bi kar were. Anî: tekoşin a hêzên netewî tevgersazî û hêzî ye. Bi seknê, ji ber xwe va, bê tekoşîn netewbûn pêk nayê. Tu gel'ên qolonî di cihên xwe da, bê tekoşîn ne gihiştiye netewbûna

dikarin taybetên netewa derbixin rê yên pêşketinê. Lê, dijmin, bi zilm û zorbazîyên xwe, bi serdestîyên qolonyalîsti ya aborî, siyasî, çandî û leşkerî hwd. û bi pêkanînên asîmlekirinê, dikarîrinê, dikare rê ya pêşketina taybetên netewî bigre. Ziman û çand a gel tune bike. Kanî ya aborî ziwa bihêle û gel tune bike. Ev pirsgirêk, pirsgirêka

xwe. Û pêşketina wê pêknehatî ye. Pirsgirêka pêşketina taybetên netewi li tekoşîn û çina nû-dem, li çîn a kedkaran bûye bar. Di destpêkê de burjuvazi yê pêşverû kêrhatê wê bû. Lê, di dema me de bi tekoşîna hemberê emperyalî û qolonyalîstiyê de, di rêberi ya karkeran û bi piştgirtina karker û gundîyan ev diçe serî.

Ger bi kurtî; li tewrê çîn û tebeqên civaka Kurdistan bê seknandinê, ewê dîtina pirsgirêkê û rê ya wê hê zêdetir ronahî bibe.

Ji ber rewş girêdayê kapîtalîzm a biyanî ya qolonyalîst û ji bê teşeyên xwe, burjuvazî yê piçûk ne tenê ji pirsgirêkên civak û netewa Kurdistan re bersiv bîne ew ji ber taybetên xwe nikare ji ziman re jî bersîv bîne. Kêrhatê rêvekirina bersîvê nîne. Nikare ziman û çand a gelê Kurd pêşxe. Lawra tam ji ziman û çand a netew a serdest dişîne. Ji alî din va tam ji çand a çînên serdest digre. Taybetiyeka burjuvaziyê piçûk ji eve; di nav gerîneka çand ê bê teşe û li hev-hatî de jiyan di domîne. Dibin zerp û dijwarî yên qolonyalîstî de ye. Dest avêtina wî yên vî rexi kêranîna mafê xwe ye. Vê bi şoreşgerî bi xemlîne ji, ev rastî wunda na be. Ji xwe ne hewceye ku li ser tewrên çîn a feodal û qompradora, çînên serdest bê kirin. Lewra ev pêplûkên sazûmana qolonyalîstin.

Di Kurdistan'ê de hejmareka piranî, sazûmanên zangerî ya qolonyalîstê Tirk hene. Xort û xwendevan, di van hêlan de civiyane. Di bin sitema qolonyalîstî de di gihên. Qolonyalîst a Tirk, tunekirin û helandina taybetên netewî di van zangeran de di meşîne. Ji destpêka xwendinê va, tarîx, çand û ziman ê Tirkî tê hînkirin. Ji ber jiyan girêdana sazûmanên tê teşekirinê, hêza vê girsa ji ji bo bersîvê kêrhat nîne. Hêza wê di bê fesalîyê de ye.

Di ronahî ya van daxuyankirina de, ev kifş pêwist e ku; tekoşîna hemberê çand a qolonyalîst, me ne be rê yên şaş, paşverû û netîcên xelet. Bellê; ji bo serrastkirin a ziman ê Kurdî, Xwendin û nivîsandin a zimanê Kurdî ra imkanê avakirina sazûmanên xwendegehî nîne. Lê, ji bo hînbûn û pêkanînên xwendin û nivisandin a zimanê Kurdî xebat bi kêr helî be ji, dibî ku bikar were. Şaşî, hînbûna zimanê Kurdî nîne. Ne jî xwendin û nivîsandina zimanê Kurdî ye. A şaş, di bin zilm û zorbazî, hoyên dijwar de parastina avakirina zangerî ya Kurdî ye, ji veqetandina pirsgirêkên netew û civakî ye. Ji dûrxistina taybetên netewî ye.

Bi kurtî; di rewşa Kurdistan'ê de benda li ber pêşketina netewî dimîne hêza derva qolonyalîstî ye. Hêza hundir, hebûn a sazûmana feodalî û eşîrî ye. Eşkereye ku di nav van hoyên dijwar de, li Kurdistan'ê ne netewbûna Kurdî, bi serdestî û giranî netewbûna Tirk kar tê. Di bin nîrê qolonyalîstî ya kapîtalîstî de rê ya hemberîya inkarîyên netewî, herikandin û tunekirina netewî hêzkirina Tekoşîna Rizgarî ya Netewa Kurdistan e. Bersîvanîna pirsgirêkê şoreş e. A rastî; serxwebûn e. Di wê hengamê de zimanê Kurdî digihîje sazger, hebûn û kesana imkanên pêşveçûnê. Sipartinên bingehî û


Lı berbang ronahi dıdın tirêjên beyanê
Gavekê Roja sorê hılê,
Gıringe em şer bıkın leşkerê hogır;
weke KAWA!..
Dı xwina em dırjinın da
Wê bıfetıse zılma sazıya kedxwara.

ewê hê zêdetir sererast bibe. Ji têkiliyê ra bibe destike bingehî. Ewê civandina çand re bibe destikeka hêzava. Ewê kêrhat ê civandinê bê.

Îro, di tekoşina hemberê polîtika çanda qolonyalîstî de ev xelekeka esasî ye, şikandin û bêfesal xistina dîtinên inkariya netewî pêwîste. Di vê hêllê de xebat giring e. Li hemberê kefte-left û pûçiyên çand a qolonyalîst û burjuvazî yên emperyalîst de, rê ya xwedî-derketina taybetiyên netewî parastin û xwedî-derketina doza netewe. Di her hoyî de berxwedana taybetên netewî ye. Û doz parastine. Ji hejmara destpêkê va ewê berxwedan rûpelên xwe bi kurtî bi pergalên çêbûnî lê, mîna çîrokî ji jîyanên girtingehan binin ber çavên xwendevana.

Em pê bawerin ku, ji nêzîkî ve ji bo jîyan û berxwedanên hepsê bên naskirin, ewê ev rûpel, roleki pêwîst bilîze. Emê bûyeran bi pergalên çêbûnî û çîrokî rêzbikin, lê, manekirin û têgihiştina bûyeran bi sipêrin xwendevanên hêja û baldar.

★★★

## *«...Lê bi qesem ezê xwedî li xewna xwe derkevim...»*

«Zingînî ji serê min dihat. Keleka dijwar çavên min girtibû, arinç ji newq a min ta neynokê min çirisk di avêt. Çingînî ji ber çavên min hê ne sekinî bû.. Dema ber çavên min ronahî bû, li pêş xortek li quncê lewitî ser-hev bûbû. Herdu destên xwe li çokan lefandiye. Û li ser lingên xwe rûniştîye... Min bala xwe dayê... Serî danî ser çokê. Wekî gilokek sekinî. Mîna porê wî bi herîyê sihandibin. Herî di porên wî de ziwa bûbû. Ta qerax û nava gohên wî jî di herîyê de mabûn. Kêleka îşlikê wî ta bin mil qetandî bû..! Tê de çerm reşûşîn xuyan dibû. Pêxwas bû. Di gemarîyê de lingên wermandî pan bûbûn. Gilêra herîyê di nav-bera tilîkên wî de avêtibû. Gûzeka wî mîna kapekî qirase xûyanî dikir. Hêdî-hêdî bi herîya dor gûzeka xwe ve leyîst. Mijûlahîyên xwe mîna ku pê bike û hûr-hûr di ponijîya. Dema min xwe libitand; ji nişka va birîyên niq-niqand... zoq ma û li min rihent...!

Min baş bala xwe dayê. Bê hemd lêvên min libitîn, rûken bûm. Çiqas! -dişîhibe gamêşê herîyê!...? Xuyanî bû ku, bi şiqam û kulma, wî di herîyê de gevizandine.. Mîna van dilderbasîyên dilê min.. Bihistilze xwe da ser lingê rastê û bi destên herî û deq-deqî, porên xwe paqij kir...! Li hev qeliband lê, ji herîyê por li xwe kire wek topekî. Hew bi kêrhat û rast bîne.. Hûr-hûr çavên xwe rakir, bi rûkenî rihênt.. Qetandina zendê wî berçav ket, fêdî kir û dîsa serê xwe, xwar xist. Destê xwe xiste devê xwe û demek dirêj pê leyîst.. neynokên xwe dikirtand..! Car bi car dibin çavan de li newqa min dirihênt. Enî ya xwe diqermiçand.. birî yên xwe tûj dikir. Şewat û çavtirsandin li nûkên wî xuya dibû.. Çarnan jî, diranê xwe dijand. Jî arçûmekên wî qirçîn dihatin. Dilê wî teng dibû. Çav dikete xwarê xewngir dibû.

Bi dengên tepe-repa dîsa xwe kir mîna gilokek di qunc de ser-hev bû... Ew kesê gir, di wî quncî de, mîna lepek xûya dikir...! Leşker qeyda lingên min sist kir, destê min ji paş vekir. Li pêş girê da û kişande ber derî... Lê ew, li xwina newqamin û li betona sormayî zûq ma...!

... em dîsa hatin cem hev! Tebat pê nedibû. Di cîh da, geh li ser vî lingî geh li ser lingê rastê rûdinişt. Geh neynokên xwe dikirtand, geh jî bîra hesîya serê xwe dilîst. Mîna ku hew tebat kir. Bi dengekî nizm.. Ha heval! Bira...!

Dît ku min xwe libitand, lê mêzekir. Dev ji peyvê berda, piştî bê dengîyeka dirêj xwe siparte qunc û raza. Di nav de hê çend bîhn derbasnebû xwe li erdê veziland... Xweydan ji enîyê hûr-hûr dinuqutî bi rûyên wî va diherikîn nav bestikên wî. Nîvê şevê derbas bûbû. Tepe-repa notirvan û şêrên wî bi hewt û kevtin kûçika ve bi tarîtî ya şeve diherikîn hundir. Çend bîn di nav de derbas ne bûbû. Dengên lingan hat! Bi tepe-repên lingan ve refa eziyet û lêdanê ketin hundir. Bû barînên wan **"Îbne! Qax lan. Lan Silvanli. Qax!"** bi gotinê re leşker, pihînek li kêlekê xist. Leşkerê din, kir ku dar li ran ê **"Sîlvanlı"** bide, mîna pûtê ku ruh girtibe bi dest dirêjî û bê hiş li pêş leşker rawest. Destên wî hatibûn ber qeysa qirka leşker di bê hişî da bû! Çavên wî mezin bûbûn, mîna ji hêlînên xwe derketî zûq ma bû. Leşkeran xwe li deri dan. Lê, leşkerê din li pêş Farqînî di cîhê xwe da ji zirav ketibû. Reng avêtibû. dilerizî. Lêvên wî li hev diketin. Bi borîn û hewar xwestina leşkeran ve Farqînî jî bi hişê xwe hat. Serwext bû, lê, hê zêdetir bizdîya, tirsa leşker jî şikîya bû. Hê di şewişî, bi şewişandinê ji derî derket û çû. Lê leşkerên din lê hatibûn hev û dû. Bi kulm û dara çavên wî girêdan û wî bi dafan ji derî derxistin. Dengên peyvê Farqînî dihatin;

*«...Axx.. hima abê bi qesem gunahin yoxtir. Û qîz de qaçirmadin û kes de öldürmedin hima. Hima a'ha öldirecek û ev kortale atacak... hima abê abê deng di bayê şevê de dûr ket...*

Bi nîvro va wî anîn. Pî lê werimandi bûn. Xwîn ji tilîka wî dihat. Kefa destê reş û şîn bûbû. Poz û dev bi xwinê, qevdikên destê wî reş xûya dîbû. Rûkên wî hişk bûbû; ne dilerizî. Jidandibû diranên xwe. Rûken bû...

Di keysê peyvan de kurte-birî çîroka xwe û ya şevê got; *«Lo lo keko.. Tew ne bêje.. Min di heyata xwe da tiştên wusa ne dît. Li ber-berojkê gund, ji ne dîtî va, ziyakî dirêj, ziyakî mezin dihate ser min. Keysa revê jî ne ma bû. Bê çare û bê rê mam. Gilêz û xore-xor ji devê zîya di herikî. Gava çend bihust di navbera me da ma, devê xwe vekir, min bikşîne nava xwe! Ji bê keysî min destên xwe avête qirika wî û.. ha min dît ku...»* li gotina xwe sekinî. Mîna dewkilê singa wî danî û rabû, bû xîze-xiza qirika wî, îske-îsk pê ket, bi çavê paldahî û kele girî ji sîngê ve Farqînî vala bû. *«Lê, bi qesem ezê xwedî li xewna xwe derkevim...»*

**Ji şehîd û girtîyê berxwedarên Tekoşîna Rizgarîya Netewa Kurdistan re dîyar dikim.**

# HEEY DÎROK...!

*Bi qelibîne rûpelên xwe yê bi qirêj û gemar!*
*Kê li enîyê danî ev tenîya qirêj û gemar!*
*Kê rûçikê te reş kirîye?*
*Kîne, yên rûçikê te sipî dikin?*
*Wê kuda here hewqas hêrsa min...*
*Wê kude here..!*
*Wê kude here gira di veşartina dilê min de kombûye?*

*Ji danezanê ber qirkirina ma ne*
*Ezê, hobibim çûyina xwe*
*Ezê bixwe binivîsînim hatina xwe!*
*Tu, dîroka bi qirêj, veke çavên xwe!*
*Hinekî tu!??*

*Ketin zevtê qunca emperyalîst*
*Datînin qolonî, kulmên xwe yên rizgarxwaz*
*Weke gurza giran-giran*
*Bi hemû xeml û rêdana xwe*

*Va bibîne..!*
*Çawa ditirsin kerîyê seyan*
*Ji nêzîkbûna, zirme-gurma dengên lingên azadîyê*
*Li Qorê, li Vietnamê, mêzekê dîrok...!*
*Laosê, li Qamboçyayê, Gineyê, Angolayê mêzeke...*
*Şoreşvanê azadîyê, ber bi aşîya bê binî dibezin*
*Li bircê kela tên çikandin alê destên partîzanan*
*Îca dora welatê mine*
*Ma qey, ez nizanim?*
*Awa! Li qadan bi milyona ban dikin*
*Dibêjin; bijî serxwebûn, bimre kedxwarî!*
*Çîya lerizî - erd hejîya*
*Qelişîn kevirê aramê yeko-yeko*
*Ya li berxwedide arama mine*
*Yê li berxwedide dilê mine!*

*Em ketine destê wan vê gavê*
*Bila werin liberxwe bibînin me*
*Bibin mîna reqelê laş dîtîyê hovbera*
*Ji bo sîlekî biteqînin dev û rûyên me*
*Bira yeko-yeko têkevin rêza kerîyê qêmera.*
*Çar dîwar... Derîyên hesin... Têlên rêsahî*
*Bira lê tije bibî jîyana me*
*An bidarxin, bihejin bejnê me*
*An jî, derxînin hember berdarkê xwe*
*Bi destên xwe.. Ber bikin dilê me.!*

*Ger, li derve berdewam dibe jîyan*
*Nehatibî birîn dengê sitran û helbestan*
*Bi dengê xwe yê keleş dixwîne mawzer..*
*Çîye?... Çi dibe?.. Kî ditirse ji mirinê!*

*Ji bo çi! bitirsin ji mirinê!*
*Li ber hemû zorîya, sîngvegirtin hebe*
*Ji bo çi! bitirsin ji îşkencê û lêdanê?*
*Doost hevalno!*

*Bila xerabibe kela zilmê*
*Bila xerabibe mala zilmê, doost hevalnoo!*
*Di daxwaza çêbûna welatekî demokratîk, serbixwe, û azad de*
*Bo zarûk bê tirs û sitûxwarî mezin bibin.*
*Ji bo sir nedin serî bidin,*
*Girînge li ber her zorîyê*
*dil, bi keder û kul li berxwe bide.*

*Li gel royên xweş tên*
*Ewê helbet pirr tişt bên gotin*

*Ji sultanan, ji serdaran, ji imparatora, ji koma îblîsa*
*Ku di nava axa bihatin hesp dilîskandin*
*Ger bi vî awahî here rewş...*
*Dibê ku pirr tişt beyî gotin.*
*Her serîyê diramîne her mirovê bi namûs.*

*Xwarina wane goştê mirovan...*
*Xwarina wan bûye xwîn zeftkaran.*
*Weke reqelê laş dîtine*
*Li ser pişta gelê minin!*
*Şerkir, nas, ehl û zarûkên me*
*Serbiserî, berberî li berxwedan...*
*Yê di navîka xak de hebûn jîyandin*
*Ji hêlla yê di kela zilmê de rûdinên, hatin xwarin*
*Li bedena sar ya xwuşkamin*
*Destê xwe yên bi qirêj gerandin, Heey dîrok..!*
*Genê însana*
*Dolê talan, homoseksuelan,*
*Jinê ku xwe bi dar de vekiribûn, ji werîsa anîn xwar..*
*Weke sehên çav-sor û har*
*Yeko-yeko ketin paşila cesedan!*
*Bêje! Hey dîroka şerma mirovahî*
*Hey kerîyê mirova, vekin çavên xwe*
*Were ziman, siltanê ker..!*
*Besee! Besee!*
*Bila bikşînin destê xwe ji welatê min*
*Destê xwe yê bi gilêr û gemar*
*Bikşînin destê xwe ji welatê min!*
*Ewana ne ku bi dêlîtî û hovberîya xwe bûne*
*Weke rêza zûlîyên tîyê xwînê*
*Jibo azadîya milletan, rizgarîya gelan*
*Li qada navîn cilên bi qorêj bên vekirin*
*Hunerê wane koma hestîyên li besta laçê*
*Wek dîya min ji zarûkan re çîrok dibêjin..*
*Li berxwedana hovîtîyê ye,*
*Dersîme*
*Koçgirîye*
*Zîlane*
*Keda me*
*Xweydana enîya me*
*Talanê hemû dewlemendîya me*

*Bide erşa bila bê feryada te!*
*Hewar bikim-hewar, çiqas bê dengê min*
*Min bi bihîzin yê li pişt çîyayê qaf*
*Çîya bilivê!*
*Erd biheje!*
*Ker bibihîzin!*
*Kor bibînin!*
*Dunya bibihîze!*

*Fûat*

